

# BUROYA KURDÎ
## ya Pêwendî û Agahdariyê

**Bultena agahdariyê N° 134 - Hezîran 2016**
Quai aux Pierres de Taille (Arduinkaai) 11, 1000 Bruxelles - Tel. 02 219 80 60 – 047 897 882
www.kurdishbureau.be kurdishbureau@scarlet. **www.facebook.com/bureaukurde**
http://en.calameo.com/accounts/3601834

# ÇALAKIYÊN BUROYA KURDÎ
*GULAN 2016*

**KONFÊRANS**



***22. 05. 2016 : 100 saliyaPeymana Sykes-Picot ya 1916***
**HoşengOsê**, nivîskar û rojnamevan,li ser Peymana ingilîzî-fransîya Sykes-Picot û bandora wê ya neyênî (te'sîra wê ya nêgatîf) li ser Rojhilata Navîn peyivî.

Berî şerrê cihanê yê yekemîn, ê 1914-1915, imperatoriya osmanî Ermenî, Suryanî û Kurd qir kirin. Piştre, Ingilîz û Fransiyan axên vê imperatoriyê di 16.05.1916 de, bi Peymana Sykes-Picot, û bipiştgiriya Rûsya, di nav hevdu de par kirin : **François-Marie Denise Georges-Picot** dîplomatekî fransî bû û **Mark Sykes** serbaz (esker) û rawêjkarekî (muşawir) siyasî bû.

Rast e ku ev peyman ne rasterast li dijî Kurdan bû, lê ew Kurd bûn ku, ji nav gelên Rojhilata Navîn, bêtirîn ji encamên wê êşiyan û hîn îro jî dêşin. Vane qonaxên (merhele) perçekirina Kurdistanê :

1- 1639: 1mîn perçekirina Kurdistanê di nav 2 perçeyan de, ji aliyê imperatoriyên osmanî û farisî, bi Peymana **"Qesra Şîrîn"**. Helbestvanê navdar ê kurd, Ehmedê Xanî, yê sedsala 17mîn, di destanaxwe "Mem û Zîn" de, li ser vê perçekirina yekemîn peyivî.

2- 1916: 2mîn perçekirina Kurdistanê di nav 4 perçeyan de (Tirkiye, Îran, Iraq û Sûriye), bi Peymana Sykes-Picot, ku ji aliyê Ingilîz û Fransiyan hat wajo (imza) kirin. Vê peymanê dewletên cihê li Rojhilata Navîn ava kirin, le ne ji bo Kurdan.

Sykes-Picot rewşa Kurdan xerabtir kir. Partiyên wan ên siyasî neçar (mecbûr) bûn ku di nav her yek ji wan 4 perçeyan de bi awakî cihê xwe pêk bînin. Û, ji bo ku karibin bijîn, ew neçar bûn ku pêwendiyên baş bi rejîmên dewletên cîran, ku dijminên welatên ku ew tê de dijîn, re bikin. Bi hezaran Kurd di têkoşîna xwe ji bo azadiyê de hatin kuştin.

Ev perçekirin, ne bitenê di ware siyasî û civakî de, lê ji aliyê raman (fikr), hest (his), helwest … jî bû.

Li dawiyê, Hoşeng Osê ji partî û rêxistinên kurdî, yên li hundir û li derveyî Kurdistanê, xwest ku dozekê (da'wa) li ber Dadgeha Ewropî ya Mafên Mirov vekin û got ku ew dizane ku ev ne karekî hêsan e, lê planeke berfireh e ji bo stendina piştgiriya siyasî, aborî û ya ragihandinê.

**BEŞDARBÛNA ÇALAKIYÊN RÊXISTINÊN DIN**

***04. 05. 2016 : Cêjna Internationaal Comité li Kortenberg***
Bihinceta (munasebet) 125 saliya "Rerum Novarum" (Hefteya Dadiyê), Fêdêrasyona Internationaal Comité, şaxa Bruksêl û Vlaams Brabant, cêjnek li navenda çandî "Colomba", li Kortenberg, pêkanî. Gelek kes beşdarî wê bûn. Piştî xwarineke sivik "lunch", civatên olî û

felsefî yên cihê metnên (textes) xwe xwendin. Piştre, sîrk-şanoyek, li ser babeta bi hev re jiyanê, hat pêşkêşkirin.

***10. 05. 2016 : Min dev ji Islamîsmê berda***

**Huseyn Bin Ebdul-Rehman**, dîrokzan û imamê miz-gefta El-Ezher, a şaredariya Saint-Josse ya Bruksêlê, konfêransek bi navê "Min dev ji Islamîsmê berda" kir. Wî sedemên ku hişt ku ew bi salan islamî be û çima wî dev ji islamîsmê berda şirove kirin. Û wî, ji ezmûna (tecrube) xwe, got jî ku çawa meriv îro dikare rastî vê "teheddiya" (défi) islamîsmê bibe.

Konfêrans ji aliyê rêxistinên Arcre, El-Kalima, Axcent û Espaces, li eywana "Communauté Internationale de Saint Dominique", li Bruksêlê, hat pêkanîn.

***19. 05. 2016 : Galaya "Welzijn"***

**Binaca Debaets**, Sekretera Dewletê ji bo Jiyana Baş "Welzijn" (ya VGC, wezareta flamanî li Bruksêlê), û VGC ji rêxistinên cihê re konsêreke muzîkvan û stran-bêj Daan, li eywana navdar "Ancienne Belgique", pêşkêşkir. Çend sed kes beşarbûn û hewayekî gelek germ hebû. Di destpêkê de "rêsêpsyon"eke dewlemend hat pêşkêş kirin. Piştre Banû Debaets xweşhatinê ji beşdaran re xwest, û li dawiyê Daan konsêraxwe kir.

# NÛÇE JI KURDISTANÊ

## *GULAN 2016*

## KURDISTANA TIRKIYÊ

**DÛMAHIYA ŞERRÊ DI NAVBERA LEŞKERÊ TIRKÎ, PKK Û DAIŞê DE**

***<u>Kîlîs</u>***

***Di 01 Gulan 2016 de***, 2 rokêt ji aliyê Sûriyê hatin avêtin. 4 kes birîndar bûn. Kîlîs li nêzîkî sînorê sûrîye.

***Di 02 Gulan de***, 2 rokêtên din ji aliyêSûriyê hatin avêtin. 1 sîvîl hatkuştin û 2 jî birîndar bûn.

***Di 03 Gulan de***, 2 rokêtên din ji aliyê Sûriyê hatin avêtin. Birîndar bûn.

***Di 05 Gulan de***, 2 rokêtjialiyêSûriyêhatinavêtin. 2 kes, kujiwan 1 polîs, birîndarbûn.

Ji 18 Çile 2016 de, Sûriye rokêtan davêje Kîlîsê. Heta nuha, 20 rûniştevan, ku ji wan 7 sûrî, hatin kuştin û 70 jî birîndar bûn. Nêzîkî 30% ji xelk ji bajar derket.
*<u>(rudaw.net, 01, 03, 05.05.2016)</u>*

***<u>Nuseybîn, girêdayî Mêrdînê</u>***

***Di 01 Gulan de***, teqînek bû. 3 serbaz (esker) hatin kuştin.

***Di 05 Gulan de***, pevçûn di navbera YPS (Yekîneyên Parastina Sîvîlan, kugirêdayî PKKê ne), polîs û leşkerê tirkî de derket. 1 polîs hat kuştin.

Di rojên dawîn de, hêzêke 2mîn a taybetî hat şandin Nuseybînê û bombekirin dajo (dewam dike).

***Di 08 Gulan de***, pevçûn di navbera YPS û hêzên polîs û leşer de bû. 1 serbaz hat kuştin.

***Di 22 Gulan de***, bombeyek teqiya. 4 serbaz (esker) bi-rîndar bûn.

Ji 14 Adar de, hatûçûn li Nuseybînê qedexeye û şerr dajo (dewam dike).

***Di 25 Gulan de***, qedexekirina hatûçûnê ber bi Mîdyat û Mehsertê, û 13 gundên parêzgeha (wilayet) Mêrdînê, fi-reh bû.
*<u>(rudaw.net, 01, 05, 09, 23, 25.05.2016)</u>*

***Di 26 Gulan de***, nêzîkî 1000 alîgirên TEV-DEMê (Tevgera Civaka Dêmokratîk), a Kurdistana Sûriyê, lê ku girêdayî PKKê ye, li sînor tirkî-sûrî, li nêzîkî Qamişlî, xwepêşan da (meşiyan), ji bo ku êrîşên leşkerê tirkî li sernavçeya Nuseybînê riswa (protêsto) bikin.
*<u>(kurdwatch.org, 30.05.2016)</u>*

***<u>Dîlok (Antep)</u>***

***Di 01 Gulan de***, erebeyekebombekirî li berbirêvebiriya ewlehiyê (emniyet) teqiya. 1 polîs hat kuştin û 14 kes jî birîndar bûn.

***Di 06 Gulan de***, 14 kesên biyanî dixwest ku ji bajarokê Tixbişarê (Oğuzlu), yê girêdayî Dîlokê, derbas bibin Kurdistana Sûriyê. Leşkerê tirkî agir berda wan. 3 kes hatin kuştin û 11 birîndar hatin birin nexweşxaneyê. Li gora çapemeniya tirkî, ev kes endamên Dewleta Islamî bûn, lê ev yek ne hatiye peyitandin (isbat kirin).
*<u>(rudaw.net, 01.06.2016)</u>*

***Istanbul***

***Bi hinceta (munasebet) 1ê Gulanê, cêjna karkeran,*** partiya kurdî HDP xwepêşandanek (meşîn) li taxa Bakırköyê, li Istanbulê, pêk anî. Polîs hat û çend kes, ku ji wan parlementera berê ya vê partiyê, Sebahat Tüncel, ragirtin. Di pevçûnan de, kesek birîndar bû û hat birin nexweşxanê.
*(rudaw.net, 01.05.2016)*

***Di 15 Gulan de***, bombeyek li aliyê asyayî yê Istanbulê teqiya. 4 kes birîndar bûn.
*(rudaw.net, 16.05.2016)*

***Amed (Diyarbekir)***

***Di 01 Gulan de***, bi şev, erebeyeke bombekirî li ber bingeheke leşkerî ya taxa Pîranê teqiya. 1 serbaz hat kuştin û 3 jî bi giranî birîndar bûn, û 26 serbaz (esker) û endamên malbatên wan jî birîndar bûn.

***Di 02 Gulan de***, qedexekirina hatûçûnê li 11 gundên qezayê Licê, ku girêdayî Amedê ye, hat daxuyandin (îlankirin).
*(rudaw.net, 02.05.2016)*

Bombeyek li bin balkonekê teqiya. Zarokekî 10 salî bi giranî birîndar bû. Servîsên ewlehiyê dest bi vekolînekê (ankêt) kir.
*(rudaw.net, 20.05.2016)*

Serbazên (esker) tirk xwest ku traktoreke ku tijje bombe bû li taxa Yenişehirê bigirin. Lê 2 kesên ku tê de bûn agirberda wan. Piştî pevçûnan, yek ji van her du kesan hat kuştin û yê din reviya. Leşker dest bi tevgereke fireh li vênavçeyê kir.
*(rudaw.net, 21.05.2016)*

***Li Amedê geştiyarî (70%) nizm bûye***

Piştî şerrên jorîn, geştiyarî (tûrîsm) 70% kêm bû. Navçeya Amedê bi şûnwaran û ciyên geştiyariyî gelek dewlemend e : Şkeft, bendava Gêlê ku li dora wê gorên şahên asûrî û oldarên misilman hene, dîwarê Diyarbekirê …
*(rudaw.net, 22.05.2016)*

***Rakirina qedexekirina hatûçûnê li Amedê***

Piştî 6 meh qedexekirin, hatûçûn li Amedê ji nuh de dest pê kir. Rûniştevanan dît ku bi sedan xanî, li 14 kuçe û 3 taxên Surê, hatine têk dan (xerab kirin).
*(rudaw.net, 23.05.2016)*

***Colemêrg (Hakkari)***

Qedexekirina hatûçûnê li Colemêrgê, qeza û erdên wê ji 03 heta 17 Gulan hat daxuyandin.
*(rudaw.net, 03.05.2016)*

***Di 13 Gulan de***, pevçûn di navbera PKK û leşkerê tirkî de, li qezayê Çelê, ku girêdayî Colemêrgê ye, bûn. 6 serbaz hatin kuştin û 8 jî birîndar bûn. Biser de jî, hêlîkoptêreke leşkerî ket û 2 pîlot hatin kuştin.
*(rudaw.net, 14.05.2016)*

***Di 31 Gulan de***, firokeyên tirkî 4 bingehên PKKê li Şemzînanê, girêdayî Colemêrgê, bombe kirin.

Bi hinceta PKKê, gelek gundên ku li sînorê Kurdistana Tirkiye û Iraqê ne hatine vala kirin û rûniştevanên wan gelek zerer dibînin.
*(rudaw.net, 31.05.2016)*

***Şirnex***

***Di 05 Gulan de***, pevçûn di navbera leşkerê tirkî û YPS derketin. 2 tax hatin bombe kirin.

Ji 52 rojan de, hatûçûn li Şirnexê qedexe ye û 95% ji bajar têk çûye (xerab bûye).
*(rudaw.net, 05.05.2016)*

***Di 30 Gulan de***, serê sibê, piştî pevçûnên di navbera PKK û polîsê tirkî de, 1 polîs û 1 serbaz hatin kuştin. 1 polîs birîndar bû.
*(rudaw.net, 30.05.2016)*

***Cizîr, girêdayî Şirnexê : 100 kes zindî şewitîn***

Encumena mafên mirov a U.N.ê daxuyand ku 100 kes ji aliyê hêzên tirkî hatin şewitandin. Serokê vê encumenê, Zeyd Reid Huseyn, ji Associated Press re daxuyand : *"li bal me belgeyên ku peyt (isbat) dikin ku li Cizîrê ji 100 kesan bêtir ji aliyê hêzên ewlehiyê yên tirkî hatine şewitandin hene »* û wî vekirina vekolînekê (ankêt) xwest û got ku qurban sîvîl bûn.
*(rudaw.net, 10.05.2016)*

***Qilaban û Roboskî, girêdayî Şirnexê***



***Di 29 Gulan de,*** piştî pevçûnên di navbera PKKê û leşkerî tirkî de, 1 serbaz hat kuştin. Parlementerê Şirnexê, yê partiya HDP, Vedat Encu, got ku di 29 Gulan de jî, bi şev, gundê Roboskî, yê girêdayî Qilabanê, hat bombe kirin û ku xortekî 17 salî hat kuştin û 5 kesên din jî birîndar bûn.
*(rudaw.net, 30.05.2016)*

***Dersîm (Tunceli)***

***Ji 05 Gulan de***, tevgerên leşkerî, bi bombekirinên hêlîkoptêran, li gundê Sînê, li dijî rêxistina çep a TKP/ML (TÎKKO) bûn. Tê gotin ku 3 endamên vê rêxistinê hatin kuştin, lê ev yek ne ji aliyê berpirsiyarên hukûmî, ne jî parêzgariya Dersîmê, hat tekez (te'kîd) kirin.
*(rudaw.net, 07.05.2016)*

***Di 13 Gulan de***, bi şev, şervanên PKKê riya Dersîm-Ezirganê girt û du erebe şewitandin.
*(rudaw.net, 14.05.2016)*

***Di 20 Gulan de***, zilamên çekdar şirketeke arizî (privé) li qezayê Pilûrê şewitand û 3 karker bi xwe re birin. Li gora hin guwahan (şahid), ew PKK bûn. Parêzgarê (walî) Dersîmê ev nûçe rastand. *(rudaw.net, 21.05.2016)*

***Di 26 Gulan de***, PKK êrîşî bingeheke leşkerê tirkî, li gundê Kuşluca, li qezayê Pirlûrê, yê girêdayî Dersîmê, kir. 1 serbaz hat kuştin û 1 jî birîndar kirin. Tevgerên leşkerê tirkî, bi piştgiriya hêlîkoptêran, dest pê kir.
*(rudaw.net, 26.05.2016)*

Ji salên 1990 de, ji derveyî bajarên sînorî, Dersîm e ku herî tijje mîn e. Ew dibin sedema kuştî û birîndaran. Di 14 Çile 1998 de, parlementa tirkî rapporek weşandi bû û tê de goti bû ku li Dersîmê 1006 gund û qeza hati bûn vala kirin û ku 40.933 kes jê derviya bûn.
*(rudaw.net, 29.05.2016)*

***Wan (Van)***

Li qezayê Ipekyolu, erebeyeke polîs bi rokêtên ku kesên nenas avêtin hat êrîş kirin. Lê ber (gulle) li xaniyekî ket û sîvîlek birîndar bûn. Hêzên ewlehiyê hatin şandin.

***Di 24 Gulan de***, di teqîneke ku hîn xwedî lê ne hatiye derketin de, 4 serbazên tirk hatin kuştin û çend jî birîndar bûn. Jimareke mezzin ji hêzên ewlehiyê reviya ciyê êrîşê.
*(rudaw.net, 08 û 24.05.2016)*

***Riha (Urfa)***

Li ciyê derketina ji bajarê Rihayê, dema ku polîsan dixwest ku erebeyekê rawestînin, kesên ku tê de bûn agir berda wan. Di şerr de, 2 kesên ku di erebê de bûn, ku tê gotin ku PKK bûn, hatin kuştin. Piştî vê yekê, hatûçûn li vê navçeyê hat qedexe kirin û hêzên ewlehiyê belav ûn.
*(rudaw.net, 10.05.2016)*

***Gever (Yüksekova)***

Di 5 hefteyên tevgerên leşkerî li dijî PKKê û şaxa wê ya bi navê YPS (Yekîneyên Parastina Sîvîl) de, 5.000 xanî hatin têk dan û 80.000 kes ji qeza reviyan. Hev-seroka partiya kurdî HDP, Selma Irmak, got ku ev tevger ji bo bicîkirina serbazan li vî ciyê stratêjîk yê Geverêhat kirin, ku 1/3'ê bajar têk çûye û ku 77 laş hatin birin « morga » Erzurumê.
Gever li sînorê Kurdistana Îran û Iraqê ye.
*(rudaw.net, 10.05.2016)*

***Di 29 Gulan de***, parêzgarê Colemêrgê (Hakkari) qedexekirina hatûçûnê li Geverê, ya ji demjimêr 6 heta 20, rakir. Ev qedexekirin di 14 Adar 2016 de hati bû farz kirin.
*(rudaw.net, 29.05.2016)*

***Ji 30 Gulan de***, ewê qedexekirina hatûçûnê di navbera demjimêr 6 û 20 de rabe.
*(rudaw.net, 30.05.2016)*

***Istanbul***

***Di 12 Gulan de***, bi piştgiriya hêlîkotêran, polîsê tirkî li 20 taxan tevger pêk anîn û 10 kes, bi tawana endambûna PKKê, ragirtin. Bi ser de jî, doza 165 endamên KCKê (Komela Civaka Kurdistan, ku girêdayî PKKê ye) dest pê kir.
*(rudaw.net, 12.05.2016)*

***Omerar û Şemzînan***

***Di 14 û 15 Gulan de***, di şerrê di navbera HPG (Hêzên Parastina Gel, ku girêdayî PKKê ne) û leşkerê tirkî de, 32 serbazên tirk û 7 HPG hatin kuştin.
*(rudaw.net, 16.05.2016)*

***Xarput***

***Di 16 Gulan de***, polîsê tirkî li Xarputê, li Kurdistana Tirkiyê, 7 kesên ku girêdana wan bi Dewleta Islamî hebû ragirtin. Ji wan, serokê sûrî yê bi navê Ferhad Şemmerî, ku serî jêkirine û îdam kirine. Hemî ev gûmanbar (kesên bi şubhe) berê mehekê ji Sûriyê hati bûn.
*(rudaw.net, 16.05.2016)*

***Mardîn***

***Di 16 Gulan de***, bombeyek li ser riya Mahsert-Mardîn teqiya. 2 serbaz birîndar bûn.

***Di 17 Gulan de***, li Mêrdînê, YPS li du ciyan êrîşî leşkerê tirkî kir. 12 serbaz birîndar bûn.
*(rudaw.net, 17.05.2016)*

***Silopî, girêdayî Şirnexê***

***Di 24 Gulan de***, erebeyeke bombekirî teqiya. 3 kes hatin kuştin. Tê gotin ku ev karê PKKê ye et ku wê tecrube kir ku bombeyeke din bavêje hêzên ewlehiyê, lê ku erebeya wê bixwe, ku tê de 3 PKK, ku ji wan 2 jin, hebûn, teqiya. Rê di navbera Silopî û Cizîrê de 2 demjimêran hat girtin.
*(rudaw.net, 24.05.2016)*

***Bedlîs (Bitlis)***

***Di 24 Gulan de***, PKKê êrîşî bingeheke jandarman kir. 1 serbaz birîndar bû. Hêzên ewlehiyê yên tirkî, bi piştgiriya hêlîkoptêran, dest bi tevgeran kir.
*(rudaw.net, 24.05.2016)*

**HUKÛMETA TIRKÎ : 6.320 XANÎ TÊK ÇÛN**

***Di 30 Gulan de***, encumena wezîran a tirkî li Saraya Çankaya civiya. Alîkarê serokwezîr, Numan Kurtulmuş, bi hûrî rewşa taxa Surê (ya Diyarbekirê) û navçeyên Cizîr, Silopî, Hezex û Geverê ravekir. Wî got ku ji 11.000 xaniyan, 6.320 ji sedema şerr têk çûne (xerab bûne).
*(rudaw.net, 30.05.2016)*

**14 ENDAMÊN PARTIYA « DBP » TÊN RAGIRTIN**

***Di 31 Gulan de***, li Dersîmê hêzên ewlehiyê 6 endamên partiya kurdî DBP li malên wan ragirtin. Li Xarputê jî 8 endamên din ên vê partiyê hatin ragirtin.

Berê çend rojan, 24 kes li qezayên Dersîm, Xozat û Pêrtagê, bi tawana endambûna PKKê û daxuyandina (îlankirin) xweseriyê « otonomiyê », hati bûn ragirtin. Piştre, 9 ji wan hati ûn azad kirin.
*(rudaw.net, 31.05.2016)*

**PKK : DIVÊ KU EM TAKTÎKÊN XWE BIGUHERÎNIN**

***Di 09 Gulan de***, Duran Kalkan, endamê encumena birêvebiriya PKKê, daxuyand ku xweparastin ji leşkerê tirkî, bi kolana xendeqan û danîna rêbendan, têr nake. Û wî got jî ku divê ku taktîk bê guherandin û êrîşkirin dest pê bike.
*(rudaw.net, 10.05.2016)*

**XWENDEKAREKE KEÇ TÊ AVÊTIN JI BO KU BI KURDÎ PEYIVÎ!**

Pınar Çetinkaya, 22 salî, keçeke xwendekar li zanîngeha Adnan Menderes, li bajarê tirkî yê Aydınê, ji jûreya (ode) xwe hat qewirandin, ji bo ku ew bi kurdî peyivî !

Pınar, bi têlêfonê, bi dê û bavê xwe re, ku ji parêzgeha kurdî ya Hakkari ne û ku tirkî nizanin, dipeyivî. 3 hevalên ku di heman odeya wê de dimînin giliyê wê kir û ew bi propaganda têrrorîst tawanbar kir.

Hinek piştî qewirandina wê, Pınar ji aliyê polîsê tirkî hat ragirtin û jê pirsîn. Piştî 3 rojan, wê tecrube kir ku vegere odeya xwe, ji bo ku hûrûmûrên xwe bistîne, lê jê re qedexe bû ku bikeve hundir û ew bi lixwekirina cakêteke bi teqemenîhat tawanbar kirin !

Ev bûyer di heman hefteya ku tê de serokê tirk Recep Tayyıp Erdoğan daxuyand ku hin zanîngehên Tirkiyê hêlînên têrrorîsmê ne bû ! Erdoğan ev yek dema ku doktora rûmetê (şeref) li zanîngeha Kocaeli, di 13 Gulan 2016 de distend, got.
*(rudaw.net, 14.05.2016)*

**LI MÎDYATÊ 50% RÛNIŞTEAN BÊTIR**

Alîkarê şaredarê Mîdyatê, ku girêdayî Mêrdînê ye, got ku ji sedema hatina bi hezaran malbatên ku ji şerr reviyane, abora (iqtisad, économie) bajêr di metirsiyê (tehlike) de ye. Û wî got jî ku di mehên dawîn de, jimara rûniştevanên Mîdyatê 50% bêtir bûye.
*(rudaw.net, 15.05.2016)*

**DÎWAREK DI NAVBERA KURDISTANA TIRKIYE Û SÛRIYÊ DE**




Tirkiye di avakirina dîwarekî gelek dirêj de dewam dike. Ew di navbera her du aliyên Kurdistana Tirkiye û Sûriyê, Nuseybîn, Qamişlî û Efrîn,de ye.

**SÛRIYE ROKÊTAN DAVÊJE SER DÎLOKÊ**

***Di 28 Gulan de***, Sûriyê 2 rokêt avêtin xaniyan û erdekî vala, li nêzîkî firokexaneya Dîlokê (Antep), li Kurdistana Tirkiyê. Tu qurban ne bûn.
*(rudaw.net, 28.05.2016)*

**1ê GULANÊ LI DIYARBEKIRÊ TÊ PÎROZ KIRIN**

Partiya Dêmokratîk a Gelan (HDP), ku nêzîkî PKKê ye, cêjna 1ê Gulanê li Diyarbekirê pîroz kir. Bi hezaran kes beşdarî wê bûn. Parlementer û berpirsiyarên vê partiyê tê de peyivîn û ji hukûmeta tirkî xwest ku "xweseriya dêmokratîk" bide Kurdan. Gelek alên kurdî hatin bilind kirin û duruşma (slogan) "Bijî Azadiya Kurdistanê" hatin avêtin. Komên muzîkê beşdarî cêjnê bûn.
*(rudaw.net, 02.05.2016)*

**1ê GULANÊ LI ISTANBULÊ**

Li xwepêşandana 1ê Gulanê li Istanbûlê, 15.000 polîs û 130 erebeyên avrêj hatin belav kirin û hêlîkoptêr firriyan. Pevçûnên tund bi xwepêşandiyan re bûn. Piştî rijandina avê, kesek mir û 20 kes jî hatin ragirtin.
*(rudaw.net, 01.05.2016)*

## DEMIRTAŞ LI AMERÎKA

Piştî seredana berpirsiyarên amerîkî li Washingtonê (li bultena me ya buhurî binêre), Selahettin Demirtaş, hevserokê partiya kurdî HDP, daxuyaniyeke çapemeniyê kir û tê de ji Amerkîka xwest ku gavên wêrek bavêje û berpirsiyarên hukûmeta tirkî û PKKê li dora maseyeke dyalogê bicivîne.
*(rudaw.net, 02.05.2016)*

## ŞERREKÎ DIN LI PARLEMENTÊ

***Di 02 Gulan de***, ji bo cara 2mîn, pevçûn li Parlementa Tirkiyê bû (li bultena me ya buhurî binêre). Li encumena destûrê, giftûgoyek, û piştre pevçûnek, di navbera partiya kurdî HDP û partiya tirkî ya desthilatê, AKP, li ser rakirina parêzbendiya (nedestdayîn, immunité) parlementerî ya hin parlementerên HDP, derket.
*(rudaw.net, 02.05.2016)*

## NIVÎSKAREKÎ TIRK BANGÎ EWROPA DIKE

Di hevpeyvîneke bi kanaleke têlêvîzyona hollandî re de, nivîskarê tirk ê navdar Orhan Pamuk, Xelata Nobel a Aşîtiyê, ji welatên ewropî xwest ku helwesteke xurttir li hemberî pelixandina mafên mirov li Tirkiyê nîşan bidin.
*(rudaw.net, 03.05.2016)*

## ERDOĞAN LI SER EWROPA HÊRS BÛYE

Yekîtiya Ewropî ji Tirkiyê re got ku rûniştevanên wê dikarin bê vîza werin Ewropa, lê ku di heman demê de divê ku Tirkiye yasaya (qanûn) xwe ya li dijî têrrorê baştir bike. Serokê tirk Recep Tayyıp Erdoğan bi hêrs bersîva wê da, pêşniyara wê red kir û got : *"Emê riya xwe de, û hûn di riya xwe de biçin"*.
*(rudaw.net, 06.05.2016)*

## ERDOĞAN LI AMEDÊ

### *PKK atêîst e*

***Di 28 Gulan de***, serokê tirk Erdoğan çû Amedê (Diyarbekir). Di axaftina xwe de, wî got ku PKK *"atêîst e"* (Xwedê nas nake).

### *Bertekên (rêaksyon) Zerdeştiyên Kurdistana Iraqê*

***Di 31 Gulan de***, rêxstina zerdeştî Yesna, ku li Suleymaniyê ye, dest bi kampanyake berhevkirina wajoyan (imza) li dijî Erdoğan kir.
*(rudaw.net, 31.05.2016)*

## XELATA RÊXISTINA MAFÊN MIROV

Weka her sal, Rêxistina Mafên Mirov li Tirkiyê, li buroya xwe ya Isanbulê, li ber gelek kesan, xelat dan kesên ku ji sedema parastina mafên mirov gelek êşiyan. Navê vê xelatê "Xelata Ayşenur Zarakolu", yek ji avakerên vê rêxistinê, ye.

Ayşenur Zarakolu mîlîtaneke gelek çalak a mafên mirov bû û endama partiya kurdî DEP, û piştre HADEP, bû. Wê xelatên rêxisina amerîkî ya nivîskaran, Pen Club, û yên gelek rêxistinên ewropî, stendi bûn. Navê wê di nav lîsta "50 merdtirîn jin li cihanê" de bû. Ew di 2002 de, piştî nexweşiya şerpencê (kansêr), mir.
*(rudaw.net, 11.05.2016)*

## PARLEMENTA TIRKÎ PARÊZBENDIYA PARLEMENERAN RADIKE : BERTEK

***Di 20 Gulan 2016 de***, parlementa tirkî deng da rakirina parêzbendiya parlementerî (nedestdayîna parlementêran). Ev proje ji aliyê partiya tirkî ya desthilatê, AKP, hati bû pêşkêş kirin, ji bo cezakirina 59 parlementerên partiya kurdî HDP, û ji bo ku karibe wan bişîne dadgehê. Vê biryarê gelek bertek (rêaksyon), ên navneteweyî jî, derxistin :

### *HDP : ala tirkî tê rakirin*

Parlementerê Şirnexê, Ferhat Encu, li ser twittera xwe berteka xwe nîşan da û got : *"Bijî Kurdistan"*. Li Tirkiyê bikaranîna gotina "Kurdistan" qedexe ye. Dêlva wê, "Rojhilat" û "Başûrê Rojhilat" tê gotin.

Partiya kurdî HDP xwe amade dike ku dozekê li dijî vê biryarê veke.

***Di 23 Gulan de***, HDP mîtîngek li ser vê yekê, li Qoserê, ku girêdayî Mêrdînê ye, pêk anî. Berê destpêkirina vê mîtîngê, çend kes ala tirkî, ku li ber deriyê avahiya şaredariya Qoserê bû, rakir. Polîs bi bombeyên hêstirrêj hat û al vegerand ciyê wê. Hin HDP ketin nav avahiya şaredariyê û polîs 20 ji wan ragirtin.

### *Yekîtiya Ewropî*

Berpirsiyara pêwendiyên derve yên Yekîtiya Ewropî, Federica Mogherini, û kommîsêr Johannes Hahn, li dijî vê biryarê bertekeke hevrayî nîşan da. Mogherini got ku divê ku rakirina parêzbendiyê ne li bin bandora (te'sîr) helwestên siyasî, li li gora prensîpên yasayî(huqûqî), be.

### *Amerîka*

Berdevkê wezareta amerîkî ya karên derve, Mark Toner, li konfêranseke çapenemiyê ya rojane, li Washingtonê, got ku *"ev doz ewê dêmokrasiyê li Tirkiyê nizm bike ... Ewê Amerîka vê yekê ji nêzîk de bişopîne. Dibe ku bîr (fikr) û helwestên siyasî yên hin parlementeran mijara giftûgoyan bin, lê ev kes ji aliyê gel hatine hilbijartin û ew beşek jê dinimînin (temsîl dikin) ..."*.
*(rudaw.net, 20, 21, 23.05.2016)*

## YEKBÛNA DU PARTIYÊN KURDÎ

Beşek ji partiya kurdî KADEPê (Partiya Beşdarbûna Dêmokratîk) xwe gihand PDK-T (Partî Dêmokratî Kurdistan - Tirkiye). Ji nuha û şûn de, ewê li bin navê PDK-T hevkariyê bikin.

Bi vê hincetê (munasebet), rêsêpsyonek li Amedê (Diyarbekir) bû. Ji partiyên din ên kurdî hat xwestin ku

bibin yek. Berpirsiyarên Partî Dêmokratî Kurdistan (PDK), ya Kurdistana Iraq û Sûriyê, jî amade bûn. Partiyên din piştgiriya xwe ji bo vê yekbûnê nîşan da.

Li eywana rêsêpsyonê, alên kurdî û fotoyên Mustafa Berzanî, bavê serokê nuha yê Kurdistana Iraqê, Mesûd Berzanî, hatin hilawestin (daleqandin). Pankarteke ku li ser wê "Belê ji rêfêrandumê re", li ser serxwebûna Kurdistana Iraqê, hat bilind kirin.

Rêsêpsyon bi stranên Nilufer Akbal kutah (xelas) bû.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 28.05.2016)*

**BALYOZÊ AMERÎKÎ LI RIHAYÊ (URFA)**
Balyozê (sefîr) amerîkî li Tirkiyê, John Bass, çû bajarê Riha, li Kurdistanê, ji bo ku beşdar bibe "Lutkeya Jinên Karsaz ên Rojhilata-Başûr". Di destpêka axaftina xwe de, wî xweşhatinê ji beşdaran re, bi kurdî, ingilîzî û tirkî, xwest. Li ser destpêkirina danûstendinên di navbera hukûmeta tirkî û PKKê de, wî bangî eva dawîn kir ku çekkan deyne. *(rudaw.net, 30.05.2016)*

**SERBAZEKÎ TIRK Ê BERÊ : JI SEDEMA TIRKIYÊ, AMERÎKA Û YPG BÛNE HEVAL**
Serleşkerê berê yê tirk, Ilker Başbuğ, ji çapemeniyê re daxuyand ku ji encama (netîce) siyaseta çewt a Tirkiyê, Amerîka û YPG (şervanên Kurdistana Sûriyê, ku nêzîkî PKKê ne) bûne heval. Û wî got jî ku Tirkiyê heman şaşî li Iraqê jî kiri bû û ku ji sedema vê yekê pêşmerge bûn hevalên Amerîka.

Başbuğ got ku Tirkiye divê ku tavil (pirr zû) siyaseta xwe li hemberî Sûriye û Iraqê biguherîne, û bi wan û Rûsya re pêwendiyên xurt bike. Û wî got jî ku îro mezzintirîn pirs li Tirkiyê ya "têrrora hundirî" (PKK) ye û ku divê ku ew xwe bi pergala (systême) serokatiyê û guherandina destûrê xerîk (mijûl) neke.

Başbuğ yek ji kesên ku di doza "Ergenkon"ê de hati bûn girtin e. Ew di 2015 de, tevî kesên din, hat azad kirin.
*(rudaw.net, 29.05.2016)*

# KURDISTANA IRAQÊ

**DÛMAHIYA ŞERRÊ LI DIJÎ DEWLETA ISLAMÎ**

**ENIYA KERKÛKÊ**

***Gundê Ebû El-Ferec tê stendin***
***Di 01 Gulan 2016 de***, piştî rizgarkirina gundê Beşîrê, li Başûrê Kerkûkê, qonaxa 2mîn a çavdêrîkirina (stendin) navçeyên vê parêzgariyê (wilayet) dest pê kir. Bi piştgiriya firokeyên hêzên hevalbend, pêşmerge gundê Ebû El-Ferec stend. Şerr li gundê Ebû Şîta jî bû.
*(rudaw.net, 01 û 03.05.2016)*

***Gundê Beşîr ji şîiyan re tê hiştin***
***Di 08 Gulan de***, piştî azadkirina gundê Beşîr, li Başûrê Kerkûkê, pêşmerge ew da mîlîsên şîî "Heşd El-Şe'bî". Ev yek, bi lihevkirin, ji bo ku rûniştevanên wî Tirkmenên şîî ne.
*(rudaw.net, 08.05.2016)*

**ENIYA MEXMÛRÊ**

***Serbazekî amerîkî tê kuştin***
***Di 03 Gulan de***, serbazekî (esker) amerîkî, ku bi pêşmerge re şerr dikir, li Mexmûrê hat kuştin. Heta nuha, Amerîka 4.067 serbaz û rawêjkar (muşawir) şandin Kurdistanê û Başûrê Iraqê.
*(rudaw.net, 03.05.2016)*

***Çekkên kîmyayî***
Fermandarê hêzên pêşmerge li eniya Mexmûrê, Sîrwan Berzanî, daxuyand ku di ***14 Gulan*** de, êvarê, şervanên Dewleta Islamî bi çekkên kîmyayî êrîşî pêşmerge kir û 14 ji wan birîndar kirin. Mexmûr 50 km li Başûrê Hewlêrê ye.

Ji berê jî, di ***25 Sibat 2016*** de, DAIŞê çekkên kîmyayî li Şingalê, navçeya Kurdên Yezîdî, bi kar anî bûn. 22 pêşmerge û sîvîl birîndar bû bûn. Di ***Tebax 2015*** de, cara yekemîn, bikaranîna van çekkên kîyayî hati bû rastandin (tesdîq kirin) û 35 pêşmerge birîndar bû bûn. Di ***13 Gulan 2016*** de, Amnesty International tekez kir (te'kîd kir) ku çend komên islamî yên dijberiya (muxalefet) sûrî çekkên kîmyayî li dijî şervanên kurd ên Sûriyê bi kar dianîn û ev yek bi "tawanên şerr" bi nav kir.
*(rudaw.net, 14.05.2016)*

***Gwêr û Xazir***
***Di 29 Gulan de***, Dewleta Islamî ji çend ciyên van her du navçeyan êrîşî pêşmerge kir. Pêşmerge bi tundî bersîv da û 19 ji şervanên wê kuştin. 1 pêşmerge hat kuştin û 7 jî bi sivikî birîndar bûn. Piştre, bi fermandariya serokê Kurdistana Iraqê, Mesûd Berzanî, 5.000 pêşmerge çend gund rizgar kirin.
*(rudaw.net, 29.05; avestakurd.net, 30.05.2016)*

***Di 30 Gulan de***, pêşmerge, bi piştgiriya firokeyên hêzên hevalbend, ber bi Xazirê pêş de çûn, 9 gundên Kurdên Kakeyî rizgar kirin, 140 endamên Dewleta Islamî kuştin û ew 10 km ji Hewlêrê dûr xist. 5 pêşmerge, ku yek ji wan li Kobanî jî şerr kiri bû, hatin kuştin.

Ji 2014 de, rûniştevanên van gundan li bajar û navçeyên cihê yên Kurdistanê, weka penaber, belav bûne.

Fermandarê pêşmerge, Ezîz Weysî, ji ajansa çapemeniya kurdî Rûdawê re daxuyand ku pêşmerge 20 km pêş de çûne û ku ew 15 km nêzîkî Mûsilê, ku ji 2 salan de di nav destên Dewleta Islamî de ye, ne.

***Di 30 Gulan de*** jî, pêşmerge li eniya Xazirê tunêleke Dewleta Islamî dît. Rûniştevan dibêjin ku dirêjiya wê 600 m. ye.
*(rudaw.net, 30.05.2016)*

***Di 31 Gulan de***, di demjimêr 3'ya serê sibê de, Dewleta Islamî cardin ji 6 aliyan û bi dirêjajiya 15 km, êrîşî pêşmerge kir. Lê wan ew şikand û 42 ji şervanên wê kuştin.

## ENIYA MÛSILÊ

***Çiyayê Başîkê***
***Di 03 Gulan de,*** nêzîkî demjimêr 5 a serê sibê, alîgirên Dewleta Islamî li Çiyayê Başîkê pêşmerge dorpêç kirin. Piştî şerrekî giran, islamî hatin şkestin, lê şerr dajo (dewam dike). Tu pêşmerge ne hat kuştin yan birîndar kirin.

***Til Siqûf***
***Di 03 û 04 Gulan de***, piştî pevçûnên li Til Siqûfê, ji kêmasî ve 145 şervanên Dewleta Islamî hatin kuştin û 50 jî birîndar kirin. Firokeyên hêzên hevalbend 42 ji tankên wan têk birin.
*(rudaw.net, 03.04.2016)*

***Peyama Serok Berzanî***
***Di 03 Gulan de***, serokê Kurdistanê, Mesûd Berzanî, peyameke pîrozkirin û spasîkirinê ji pêşmerge re şand, ji bo şerrê wan li Eniya Bakurê Mûsilê. Wî ji wan re got ku têkoşîna wan destaneke kêmdîtî ya liberxwedan û mêrxasiyê ye.
*(avestakurd.net, 04.05.2016)*

***Başîk***
***Di 14 Gulan de,*** şervanên ereb ên sunnî, "Heşdî Watanî", ku Tirkiye piştgiriya wan dike, êrîşî gundekî ku ji aliyê Dewleta Islamî hatiye çavdêrî kirin kir. Lê piştî 6 demjimêr şerr, wan nikari bû wî bistînin. Ew, tevî jimarek ji kuştî û birîndaran, vegeriyan bingeha xwe. Amanca vê hêzê, ku ji 1.200 zilam pêk hatiye, stendina Mûsilê ji destê Dewleta Islamî ye.

Hatina hêzên tirkî vê navçeyê ji aliyê hukûmeta iraqî bi tundî hat tawanbar kirin. Amerîka, Rûsya û Îran jî nerazîbûna xwe nîşan da.
*(rudaw.net, 15.05.2016)*

***Di 25 Gulan de***, 2 endamên Dewleta Islamî li çiyayê Başîkê êrîşî pêşmerge kir. Lê ew hatin kuştin.

Çiyayê Başîkê li nêzîkî gundên Bakurê Mûsilê ye. Pêşmerge jê 40 km çavdêrî (kontrol) dikin.
*(rudaw.net, 25.05.2016)*

***Eski Musul***
***Di 18 Gulan de***, Dewleta Islamî tecrube kir ku êrîşeke xwekuj li ser pêşmerge, li eniya Rojavaya bajarê Mûsilê, "Eski Musul", bike. Lê pêşmerge êrîşî wê kir û 11 ji şervanên wê kuştin. 3 pêşmerge bi sivikî birîndar bûn.
*(rudaw.net, 18.05.2016)*

***4 Islamî ber bi pêşmerge direvin***
4 mîlîtanên Dewleta Islamî ji vê rêxistinê reviyan û li bal pêşmerge pena bûn (iltica kir). Nuha pêşmerge li ser wan vekolînekê dike. Ev islamî dibêjin ku her yek ji wan 100 dolar dan qaçaxçiyan, ji bo ku karibe bireve.
*(rudaw.net, 15.05.2016)*

## ŞINGAL
***Di 30 Gulan de***, bi şev, şervanên Dewleta Islamî êrîşî pêşmerge, li çend ciyên navçeya Şingalê kir : Domiz û gundên Ramosiye û Kirovê, ku li Rojavaya Şingalê ne. Lê ew hatin şikandin. Pêşmerge 9 erebeyên wan têk birin û gelek ji wan kuştin û birîndar kirin.
*(rudaw.net, 31.05.2016)*

## 2 KEÇÊN YEZÎDÎ LI FELLÛCÊ TÊN RIZGAR KIRIN
Parlementera kurd a yezîdî li parlementa iraqî, Viyan Dexîl, ji ajansa çapemeniya kurdî Rûdawê re daxuyand ku di tevgera Fellûcê de, li Başûrê Iraqê (li jêr binêre), 2 keçên kurd ên yezîdî ji Dewleta Islamî hatin rizgar kirin. Di destpêkê de, ew hati bûn birin bajarê Reqqa, paytexta Dewleta Islamî li Sûriyê. Piştre, ew hati bûn firotin û birin Fellûcê, li Iraqê. Viyan Dexîl got jî ku nuha ew li bal wê ne û ku tendurustiya (saxî) wan baş e.
*(rudaw.net, 31.05.2016)*

## 1.206 PÊŞMERGE RAHÊNANA XWE KUTAH KIR
1.206 pêşmerge rahênana xwe (perwerde) li navçeyên Hewlêr, Duhok û Çemçemalê kutah kir (qedand). Ev rahênan 10 hefte ajot û ji aliyê rahênerên biyanî hati bû kirin. Piştre, pêşmerge çekkên amerîkî stendin.
*(rudaw.net, 06.05.2016)*

## HONGARYA ÇEKKAN DIDE PÊŞMERGE
Konsulê nuh ê hongarî li Hewlêrê, Csaba Vezekényi, li konfêranseke çapemeniyê li Halabca got ku Hongarya 275 ton çek da bûn pêşmerge û ku ewê bêtir jî bide. Û wî got jî ku rahênerên (mamosteyên perwerdekirinê) hongarî hîn jî rahênana pêşmerge dikin. Bi ser de jî, pêşmerge çend caran li Hongarya hatin derman kirin.

Şirketa hongarî ya pêtrolê, MOL, li Kurdistanê, weka li welatên din, çalak e û çend bîrên wê yên pêtrolê hene.
*(rudaw.net, 09.05.2016)*

**CUHANEKÎ KURD ŞERRÊ DAIŞÊ BI ENTRÊNÊTÊ DIKE**

Cuhanekî kurd ji bajarê Duhokê bi entrênêtê şerrê Dewleta Islamî dike. Ew malperên wê « hak » dike û dibêje ku wî 30.000, ku ji wan fîlmên vîdêo, ji dosyên wê derxistine. Ew dibêje ku ew vê yekê dike ji bo ku wê wacibekî li hemberî welatê xwe dibîne û ji bo ku beşdar bibe têkoşîna pêşmergeyên ku li eniyê ne.
*(rudaw.net, 15.05.2016)*

**BOMBEKIRINÊN TIRKIYÊ**

***Di 05 Gulan de***, ji lidûketina PKKê, ji kêmasî ve 6 firokeyên tirkî 9 gundên navçeya Sîdekanê, li Kurdistana Iraqê, bombe kirin. PKK nêzîkî 5.000 şervanên wê hene û piraniya wan xwe li navçeyên çiyayî yên Kurdistana Iraqê, li nêzîkî Kurdistana Tirkiyê, vedişêrin.
*(rudaw.net, 05.05.2016)*

**GAZINÊN GUNDIYÊN AMEDÎ**

Rûniştevanên navçeya Duhokê, li Bakurê Kurdistana Iraqê, ji sedema pevçûnên di navbera leşkerê tirkî û PKKê de, ber bi gundan reviyan. Karên gund li 440 gundên bajarê Amedî rawestiyane. Endazên çandinî (muhendisên ziraî) dibêjin ku ji sedema êrîşên ezmanî, gund bicarek têk çûn. Ji du salan de, çiyayên vê navçeyê, ku PKK xwe tê de vedişêre, her roj ji aliyê leşkerê tirkî tên bombe kirin.
*(rudaw.net, 28.05.2016)*

**ŞERR LI DIJÎ DAIŞÊ LI BAŞÛRÊ IRAQÊ**

***Semawe***

Du êrîşên xwekuj li bajarê Semawe bûn. 20 kes hatin kuştin û gelek jî birîndar bûn. Êrîşa pêşîn li ber avahiya şaredariyê û ya 2mîn li rawesta otobusan bû.
*(rudawnet.com, 01.05.2016)*

***Fellûce***

***Di 03 Gulan de***, leşkerê iraqî, bi alîkariya mîlîsên şîî, çavdêriya riya stratêjîk, ku digihîne Fellûcê, li parêzgeha Enbarê, 45 km ji Bexdadê, kir. Ev yek, bi piştgiriya polîs, zilamên êlan (eşîr) û firokeyên hêzên hevalbend. Li Fellûce 50.000 kes dimînin û ew di 2014 de ji aliyê Dewleta Islamî hat stendin.
*(rudaw.net, 03.05.2016)*

Wezareta iraqî ya parastinê ji rûniştevanên Fellûca ku ji 2014 de hatiye dorpêç kirin xwest ku jê derkevin û alên sipî bilind bikin. Ji 2015 de, Dewleta Islamî destûr nade sîvîlan ku jê derkevin. Nuha, jimara van sîvîlan digihêje 75.000.
*(rudaw.net, 22 û 29.05.2016)*

***Di 27 Gulan de***, Kommîsarya Bilind a Penaberan a Neteweyên Yekbûyî (UNHCR) daxuyand ku li Fellûca jimara îdamkirinên zilam û kurrên ku naxwazin li tenişta Dewleta Islamî şerr bikin bilind bûye. Û wê got jî ku gelek kes hatin qamçî kirin, kuştin yan zindî (sax) gor kirin.
*(rudaw.net, 28.05.2016)*

***Di 30 Gulan de***, leşkerê iraqî û mîlîsên şîî yên Heşdî Şe'bî, bi piştgiriya firokeyên hêzên hevalbend, ketin nav Fellûca. Yek ji fermandarên iraqî, Hemmûd El-Heyasî, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku 300 xwekujên Dewleta Islamî tê de hene. Navenda bajar hîn di destê Daişê de ye.
*(rudaw.net, 30.05.2016)*

***Bexdad***

***Di 06 Gulan de***, 3 teqîn bûn. 9 kes (6 serbaz û 3 sîvîl) hatin kuştin û 21 (5 serbaz û 16 sîvîl) birîndar kirin.
*(rudaw.net, 06.05.2016)*

***Di 11 Gulan de***, 3 teqîn bûn. Ji kêmasî ve 80 kes hatin kuştin û 10 jî birîndar bûn. Dewleta Islamî xwedî li van teqînan derket.
*(rudaw.net, 11.05.2016)*

***Di 17 Gulan de***, 3 teqîn bûn. 44 kes hatin kuştin û 91 birîndar bûn.
*(rudaw.net, 17.05.2016)*

***Di 19 Gulan de***, bombeyek teqiya. 2 kes hatin kuştin û 6 birîndar bûn.

Ev teqîn ji aliyê komên çekdar ên dijberiyê hatin kirin. Amanca wan hêzên ewlehiyê û ciyên vekirî yên ku tê de gelek kes hene ye.
*(rudaw.net, 20.05.2016)*

***Di 30 Gulan de***, 3 teqîn bûn. Ji kêmasî ve 11 kes hatin kuştin û 18 birîndar bûn.
*(rudaw.net, 30.05.2016)*

***Xwepêşandan li Bexdadê***

***Di 20 Gulan de***, bi hezaran kes li Meydana Tehrîrê xwe pêşan da (meşiyan), ji bo ku çaksaziyan (réformes) bixwazin. Ew çûn Zona Kesk (a sazendeyên fermî) û deriyên wê û Pira Komarî şikandin. Li wê derê, polîs bi gazên hêstirrêj êrîşî wan kir. 2 xwepêşandî û rojnamevanek hatin kuştin û 100 kes birîndar bûn.
*(rudaw.net, 20.05.2016)*

***Riya Bexdad-Kerkûkê***

***Di 22 Gulan de***, erebeyeke bombekirî li ser bingeheke mîlîsa şîî Heşdî Şe'bî, li serr riya Kerkûk-Bexdadê, li qezayê Suleymanbegê, teqiya. 2 mîlîsên şîî hatin kuştin û 6, ku ji wan 1 sîvîl, birîndar bûn.
*(rudaw.net, 22.05.2016)*

***Mîrekî islamî yê Daişê li Enbarê hat kuştin***
Mîrê Dewleta Islamî, Şakir Wehib, 30 salî, bi firokeyeke leşkerê iraqî li Hedîsê, li parêzgeha Enbarê, hat kuştin. Vî mîrî 3 ajo (şoffor) li Hedîsê kuşti bûn. "Haut parleurs"ên mizgeftan ev mirin daxuyand.

***Di 10 Gulan de***, berdevkê wezareta amerîkî ya parastinê, Peter Cook, ev nûçe li konfêranseke çapemeniyê rastand. Wî got ku Şakir Wehib, ku bi navê Ebû Wehîb, dihat nas kirin, tevî 3 çekdarên din ên Dewleta Islamî, hat kuştin.
*(rudaw.net, 07 û 10.05.2016)*

***Rumadî***
***Di 12 Gulan de***, Dewleta Islamî êrîşî bajarê Rumadî, ku navenda birêvebiriyî (idarî) ya parêzgeha Enbarê ye, kir. 25 mîlîsên şîî û serbazên iraqî hatin kuştin. Pira stratêjîk a Bues hat têk dan. Qedexebûna hatûçûnê hat daxuyandin.

Enbar ji aliyê Dewleta Islamî di Hezîran 2014 de hati bû stendin, lê leşkerê iraqî ew di 2015 de ji nuh de stend.
*(rudaw.net, 12.05.2016)*

***Beled***
***Di 13 Gulan de***, êrîşeke xwekuj li qezayê Beledê, li Bakurê Bexdadê, bû. Ji kêmasî ve 16 kes hatin kuştin û 25 birîndar kirin.
*(rudaw.net, 13.05.2016)*

***70 Islamî li Fellûca tên kuştin***
***Di 23 Gulan de***, tevgera azadkirina bajarê Fellûca, yê parêzgeha Enbarê, 50 km li Rojavaya Bexdadê, dest pê kir. Berdevkê Hevalbendiya Navneteweyî, Steve Warren, daxuyand ku 70 şervanên Dewleta Islamî, ku ji wan "mîrê" Felluca, Mahir Bilavî, tê de hatin kuştin.

Ji destpêka 2014 de, Fellûca di nav destê Dewleta Islamî de ye. Nuha, ew ji aliyê leşkerê iraqî û mîlîsên şîî dorpêçkirî ye. 75.000 rûniştevanên sîvîl li navenda bajar hene, lê Dewleta Islamî nahêle ku ew jê derkevin.
*(rudaw.net, 28.05.2016)*

**BILINDBÛNA JIMARA BERDANAN**
Li gora serjimêriyên (statistiques) encumena yasayî ya Herêma Kurdistanê, di 3 salên dawîn û 6 mehên 2016 de, 28.471 berdan (telaq) bûn. Ango, di rojê de 22. Di vajayê (eks) vê yekê de, jimara zewacan herku diçe kêmtir dibe.

Di 2007 de, Birêvebiriya Nehiştina Tundiyê li dijî Jinan hati bû ava kirin. Her sal, bêtir halet tên tomar (qeyd) kirin.
*(rudaw.net, 07.05.2016)*

**ŞEWAT LI BAZARA HEWLÊRÊ**
***Di 25 Gulan de***, dema ku merivekî bi motosîklêt benzîn distend, şewateke mezzin bû. Tu qurban ne bûn, lê bi hezaran lîtreyên pêtrolê şewitîn.
*(rudaw.net, 25.05.2016)*

**DÊ Û BAVÊN 2.700 ZAROKÊN YEZÎDÎ LI BAL DAIŞÊ NE**
Buroya Karên Yezîdiyan a Kurdistana Iraqê rapporek weşand û tê de got ku ji 2014 de, 2.700 zarokên yezîdî diya xwe, yan bavê xwe, yan herduyan hunda kirin, ji bo ku ew ji aliyê Dewleta Islamî hatin revandin : 1.750 ji van zarokan bavên xwe, 470 diyên xwe û 350 herdu hunda kirin.

Û wê got jî ku hemî ev zarok li kampên cihê yên Kurdistanê, bi lênêrîneke sînorkirî yan bê lênêrîn, dijîn. Wê ji hukûmeta kurdî û alîkarên navneteweyî xwest ku li vê pirsa sêwiyan bi ciddî binêrin.

3.878 ji 6.255 kesan, ku ji wan nêzîkî 1.800 jin û zarokên ku ji aliyê Dewleta Islamî hati bûn revandin, hîn jî dîlên (esîr) wê ne. Tê pêşbînî (texmîn) kirin ku jimara Yezîdiyên ku ji aliyê Dewleta Islamî hatine kuştin digihêje 3.000, lê daneyên pirr rast nîn in, ji bo ku gelek ji malbatên wan ji Iraq û Kurdistanê çûn Ewropa.

Buroya koçberiya iraqî li Hewlêrê daxuyand ku ji 2014 de, nêzîkî 40.000 Yezîdî koç bûn Ewropa.

**SEREDANÊN KURDISTANÊ**

***Amnesty International***
***Di 04 Gulan 2016 de***, sekreterê giştî yê Amnesty International, Salil Shetty, rastî serokê Kurdistanê, Mesûd Berzanî, û piştre serokwezîr Nêçîrvan Berzanî, hat. Wî spasiya xwe ji pêşmerge û gelê Kurdistanê re, ji bo pêşwazîkirina bi sed hezaran penaber, kir.
*(rudaw.net, 04.05.2016)*

***Amerîka***
***Di 04 Gulan de***, bi hinceta (munasebet) kampanya hilbijartinan li Amerîka, sênatorê amerîkî Marco Rubion, ji partiya komarî, di çarçeveya gerra xwe li Rojhilata Navîn de, çû seredana Kurdistanê, ji bo ku şerrê li dijî Dewleta Islamî binirxîne.

Rubion rastî rawêjkarê (şêwirmend) encumena ewlehiyê ya Kurdistanê, Mesrûr Berzanî, hat. Wan dyalogeke baş li ser pêwendiyên wêbê (ên li pêş) di navbera Amerîka û Kurdistanê de, şerrê li dijî Dewleta Islamî û êrîşa plankirî ya Mûsilê kir.
*(rudaw.net, 06.05.2016)*

***Hongarya***
Wezîrê hongarî yê parastinê, Istiphan Simitch Sko, çû Hewlêrê û rastî serok Mesûd Berzanî hat, ji bo

pêşkêşkirina alîkariya leşkerî ya rasterast (direct) ji pêşmerge re (li jor binêre), bê derbasbûna ji hukûmeta fêdêral a iraqî.
*(avestakurd.net, 10.05.2016)*

***Îtalya***



Serokwezîrê kurd **Nêçîrvan Berzanî** pêşwaziya wezîra îtalî ya karên derve, **Roberta Pinotti**, û şanda wê ya leşkerî û dîplomatîk kir. Wê pêşmerge û hukûmeta Kurdistanê, ji bo biserketinên wan li ser Dewleta Islamî, pîroz kirin. Û wê sersaxiyê ji bo şehîdbûna pêşmerge xwest û got ku divê ku hemahengiya (koordinasyon) di navbera pêşmerge û welatên hevalbend, nemaze Îtalya, de firehtir bibe û ku ewê welatê wê alîkariya xwe ya leşkerî bajo (dewam bike).

Her du aliyan pêwendiyên Herêma Kurdistanê bi hukûmeta Bexdadê re û êrîşa wêbê ya li ser Mûsilê (paytexta Dewleta Islamî li Iraqê, weka Reqqa li Sûriyê) giftûgo kirin.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 10.05.2016)*

***Şandeke iraqî***
***Di 12 Gulan de***, şandeke ku ji çend berpirsiyarên hukûmeta fêdêral a iraqî li Bexdadê, û çend berpirsiyarên partiya desthilatê Da'wa, pêk hati bû çû Hewlêrê.

Amanca seredanê giftûgokirin bi berpirsiyarên Kurdistanê re li ser nelihevkirinên di navbera Hewlêr û Bexdadê de bû : Di 30 Nîsan 2016 de, xwepêşandiyên partiya şîî ya Muqteda El-Sadr êrîşî zona kesk a Bexdadê (taxa sazendeyên fermî) kiri bû û li hin parlementerên kurd ên parlementa iraqî xisti bûn. Evên dawîn xwe kişandi bû û vegeriya bûn Kurdistanê.

Çend roj berê vê seredana hukûmî ya iraqî, serokê parlementa iraqî, Selîl Jibûrî, tevî şandekê çû bû bajarê Suleymaniyê, li Kurdistanê, û vegera van parlementerên kurd xwesti bû, lê xwestina wî ji hemî aliyan hati bû red kirin.
*(rudaw.net, 12.05.2016)*

***Kurdistana Sûriyê***
***Di 16 Gulan de***, şandeke Encumena Neteweyî ya Kurdî li Sûriyê "ENKS", bi serokatiya Ibrahîm Biro, rastî serok Mesûd Berzanî hat. Wan rewşa ramyariyî (siyasî), ewlehiyî (emnî) û aborî (iqtisadî) li Kurdistana Sûriyê giftûgo kir. Berzanî piştgiriya xwe nîşan da.
*(avestakurd.net, 16.05.2016)*

***Serokê Hevalbendiya Navneteweyî li dijî DAIŞê***
***Di 24 Gulan de***, serok Mesûd Berzanî pêşwaziya serokê hêzên navneteweyî yên hevalbend, gênêral Sean Barry McFarland, û şanda wî kir. Gênêral ji Berzanî re agahdarî li ser tevgera azadkirina Fellûja, li Başûrê Iraqê, û amadekariyên azadkirina nêzîk a bajarê Mûsilê dan. Û ew li ser girîngiya hemahengiya bi hêzên pêşmerge re jî peyivî.
*(rudaw.net, 24.05.2016)*

***Şanda dijberiya sûrî***
***Di 31 Gulan de***, serok Mesûd Berzanî pêşwaziya serokê dijberiya sûrî "Itilaf", Enes Ebdê, û şanda wî kir. Ebdê spasiya serok Berzanî, ji bo alîkarîkirina penaberên sûrî, kir û got ku ezmûna (tecrube) Kurdistana Iraqê nimûneyek dewlemend a têkoşîn, pêşdebirin û bihevrejiyanê ye. Serok Berzanî jê re got ku nebûnaewlehiyê û tundî li Sûriyê bandora (te'sîr) wan li ser Herêma Kurdistanê û li ser Iraqê heye, ku ji bo vê yekê ye ku Kurdistan amade ye ku roleke erênî (pozîtîf) di çarekirina pirsan de bilîze.

***Di heman rojê de***, ev şand ji aliyê rawêjkarê encumena ewlehiyê ya Kurdistanê, Mesrûr Berzanî, hat pêşwazî kirin. Her du alî xwestina xwe ku pêşmergeyên Kurdistana Sûriyê (ku negirêdayî PYD ne) karibin ji Kurdistana Iraqê vegerin Sûriyê, ji bo ku tê de şerr bikin, ravekir (got). Ev hêz di 2012 de, li Kurdistana Iraqê rahênan (temrîn) û şerrê Dewleta Isalmî kiri bûn.
*(avestakurd.net, 31.05.2016)*

**CÊJNA SERXWEBÛNA KURDISTANÊ**
***Di 16 Gulan 2016 de***, bi hinceta 100 saliya Peymana Sykes-Picot, ku di ***16 Gulan 1916*** de Kurdistan di 4 perçeyan de (Tirkiye, Iraq, Îran û Sûriye) perçe kiri bû, azadkirina navçeyên Kerkûk, Şingal û Xaneqînê ji aliyê pêşmerge, û rêfêranduma li ser serxwebûna Kurdistanê ku ewê di meha Çirî (octobre) 2016 de bibe, cêjneke mezzin li Hewlêrê bû û çend hezar kes beşdarî wê bûn.

Serokê Kurdistanê, Mesûd Berzanî, li ser vê yekê daxuyaniyek kir, serxwebûna Kurdistanê tekez (te'kîd) kir û bangî Iraqê kir ku bibe yan hevkarekî baş yan jî hevsiyekî (cîran) baş.

**MARK SYKES Û FRANÇOIS GEORGES PICOT KÎ NE ?**
**Mark Sykes** di 16 Adar 1879 de li Seldmer, li Ingilterê, bû bû. Ew ji malbateke dewlemend û bi hêz bû. Wî

xwendina xwe li zanîngeha Cambridgê kutah (xelas) kir. Di 1897 de, xwe gihand leşkerê brîtanî. Heta 1904, wî 4 pirtûk di warê leşkerî de belav kirin. Ew hergav bi bavê xwe re li navçeyên imperatoriya osmanî digerriya. Ew bû nimînendeyê (temsîlcî) Brîtanya Mezzin di giftûgoyên li ser parvekirina (perçekirin) vê navçeya Rojhilata Navîn di navbera Brîtanya Mezzin û Fransa de. Û ew rawêjkarê (muşawir) ramyariyî (siyasî) û leşkerî, û nemaze pisporê (mutexessis) Sûriyê, bû.

Sykes li welatên cihê yên cihanê gerriya û di 20 Hezîran 1951 de, di 80 saliya xwe de, li Parîsê wefat kir.

**François Geores Picot** di 1870 de,li Parîsê, bû bû. Bavê wî dîrokzanê fransî Georges Picot bû. Di 1893 de, ew li Dadgeha Parîsê bû parêzer (avukat). Di 1895 de, bû dîplomat û sekreterê balyozê (sefîr) Fransa li Danimarkê. Di 1913 de, ew Konsulê Giştî yê Fransa li Beyrûtê, li Lubnanê, bû. Di 1915 de, li ser daxwaziya Fransa, vegeriya welatê xwe. Ew bû rawêjkarê ramyariyî (muşawirê siyasî) li bal hukûmetê û bi hin partiyên ramyariyî û yên din re, ku dixwest ku Sûriye û Lubnan bikevin bin çavêdriya (kontrol) Fransa, kar dikir. Ji 1917 heta 1919, bû kommîserê bilind li Filistîn û Sûriyê. Di 1920 de, bû kommîserê bilind li Bulxaristanê (Bulgaria), û piştre balyoz li Arjantînê.
*(rudaw.net, 17.05.2016)*




## YEKÎTIYA EWROPÎ EWÊ ALÎKARIYA KURDISTANÊ BIKE

***Di 23 Gulan 2016 de***, Encumena Yekîtiya Ewropî li Bruksêlê civiya û biryar stend ku tecrube bike ku ji aliyê diravê (malî) alîkariya Kurdistana Iraqê, bi riya Banka Cihanî (World Bank) û FMI (Fonds Monétaire International) bike, ji bo ku ew karibe ji borana (krîz) xwe ya aborî (iqtisadî) derkeve (nizmbûna buhayê pêtrolê, herikîna penaberan ji Iraq û Sûriyê …).

Nimînendeyê (temsîlcî) hukûmeta Kurdistana Iraqê li Bal Yekîtiya Ewropî (KRG), Dilawer Ajgeyî, daxuyand ku ev cara yekemîn e ku Yekîtiya Ewropî vê mijarê (babet, mewzû) giftûgo dike.
*(rudaw.net,24.05.2016)*

## JI NATOYÊ XWESTINA BÊTIR ALÎKARÎ JI PÊŞMERGE RE

Lahûr Cengî Talabanî, birêvebirê Ajansa Servîsên Dizzî, Zanyarî, ya hukûmeta Kurdistana Iraqê, çû Bruksêlê û ji NATO û berpirsiyarên Yekîtiya Ewropî xwest ku bêtir alîkariya pêşmerge, di têkoşîna li dijî Dewleta Islamî de, bikin. Pê re parlementerê hollandî yê sosyalîst, Henricus van Bommel, hebû.
*(Med-Diplomatic, 24.05.2016)*

## KONFÊRANS LI SER RÊFORMA ABORÎ

***Di 30 Gulan de***, Konfêransa Rêforma Aborî li Hewlêrê dest pê kir. Wezîrê planê, Elî Sindî, tê de sedemên bingehî yên borana aborî (krîza êkonomîk) li Kurdistanê ravekirin : 1) Nedayîna para Kurdistanê (17%) ji aliyê hukûmeta iraqî ya fêdêral li Bexdadê. 2) Şerrê li dijî Dewleta Islamî. 3) Nizmbûna nirxê pêtrolê. Û wî got jî ku ewê hukûmeta kurdî vê pirsa aborî, li ser bingeha 45 rappor û lêgerînên zanyariyî (ilmî), çare bike.

Wezîr got ku pêwîstiya hukûmeta wîbi 5 milyar dolaran heye, ji bo ku karibe 4.000 projeyên ku hîn kutah ne bûne (ne qediyane) bajo (dewam bike). Û wî got jî ku wê gelek pere ji bo avakirina rê, dibistan û nexweşxaneyan sarf kirine. Wî bangî civata navneteweyî kir ku guvaşan (tezyîq) li ser hukûmeta fêdêral a iraqî bike, ji bo ku ew para Kurdistanê ya buceya xwe bide (mafê Kurdistanê nîn e ku deynan bistîne, ji bo ku ew ne dewleteke serbixwe ye).

Ji derveyî (ji xeynî) serokê Kurdistanê Mesûd Berzanî, serokwezîr Nêçîrvan Berzanî û berpirsiyarên din ên bilind, pisporên Banka Cihanî û konsul li vê konfêransê amade bûn.

Hukûmeta Kurdistanê, tevî Banka Cihanî, biryar stend ku nexşeyeke (plan) aborî di 3 salan de pêk bîne. Di Adar 2013 de, wezareta planê ya Kurdistanê û Banka Cihanî li ser alîkariyeke teknîki li hev kiri bû.

Li vê konfêransê, nimînendeya (temsîlcî) UNê li Iraqê, Lise Grande, peyivî û got ku ev plana çaksaziyê (rêform) ji her kesekî li Kurdistan û Iraqê û ji şirîkên navneteweyî re bi awakî vekirî nîşan dide ku Kurdistan di warê rêformê de ciddî ye.

Birêvebira Bernameyên Navneteweyî yên Şirketa Rand, Robin C. Meilli, jî peyivî û got ku piştî xebateke xurt a 6 salî bi hukûmeta Kurdistanê (KRG) re, ew û hevkarên wê bi awakî kûr girêdayî rêform û biserketina vê navçeyê ne. Û wê got jîku avakirina navçeyekê, bi nehiştina astengan li ber pêşveçûna wê, ji 8 salan de vîzyona (dîtina kûr û dûr) serokwezîrê kurd bû.
*(rudaw.net, 30.05.2016)*

# KURDISTANA ÎRANÊ

**ŞERR LI SERDEŞTê**
***Di 04 Gulan 2016 de***, şerr di navbera hêzên dijberiya kurdî, ya bi navê "Yekîneyên Parastina Kurdistana Rojhilat" û Pasdarên (esker) îranî de, li gundên Hamran, Mewne û Sartke, yên bajarê Serdeştê, li Kurdistanê, derket. Hêlîkopêr jî beşdarî wî bûn. Ji kêmasî vê 15 "ambulans" (erebeyên hawarê) zû hatin şandin navçeyên ku tê de hêzên ewlehiyê belav bûne.

Heta nuha, pêwendiyeke gelek rijd a dijberiya kurdî bi hukûmeta Tehranê re hebû, lê komên wê dev ji bikaranîna tundiyê berda bû û pevçûn kêm bû bûn.
*(rudaw.net, 04.05.2016)*

**ÎRAN BÊTIR SERBAZ DIŞÎNE SÎNOR**
Fermandarê pêşmergeyên Partî Dêmokratî Kurdistan li Îranê « PDK-Î », Rehîm Mengurî, ji ajansa çapemeniya kurdî Rûdawê re daxuyand ku hukûmeta îranî bircên nuh li dirêjayiya sînorê di navbera Kurdistana Îran û Iraqê de, li qezayên Şino û Pîranşarê, ava dike û ku leşker tê de hatiye belav kirin.

Ev hukûmet Kurdên van navçeyên sînorî bi hilgirtina çekkan û sîxuriyê (casûsî) tawanbar dike.
*(rudaw.net, 20.05.2016)*

**PÊWENDIYÊN BAZARGANIYÎ DI NAVBERA KURDISTANA ÎRAN Û IRAQÊ DE**
***Di 19 Gulan de***, parêzgarê (walî) Sinê (Sanandaj), li Kurdistana Îranê, Abdul-Hamîd Zahidî, tevî şandekê çû Hewlêrê, paytexta Kurdistana Iraqê. Ew tê de rastî parêzgarê Hewlêrê, Newzad Hadî, û wezîrê hundir ê Kurdistana Iraqê, Kerîm Sincarî, hat.

Zahidî got ku amanca vê seredanê xurtkirina pêwendiyên bazarganiyî, çandinî û pîşesaziyî (sinaî) di navbera her du parêzgehan de ye. Û wî got jî ku parêzgeha wî ya Sanandajê amade ye ku genim ji gundiyên Hewlêrê bikirre, wî bike arvan (ard), û piştre wê ji wan re bifiroşe. Li hemberî vê yekê, wî got ku li Sinê xizmetên baş ên bijîjkî (tibbî) û dermanfiroşiyî (ên farmasî) hene û xelkê Kurdistana Iraqê vexwend (dawet kir) ku werin, ji bo ku xwe bidin derman kirin (rehet kirin), dêlva ku biçin Tehranê, ji bo ku perê riya wê gelek e.

Di konfêranseke çapemeniyê de, her du parêzgar got ku wan metnekî (texte) hevkariyê di warên bazarganiyî û çandî de amade kiriye.

Kurdistana Iraqê ji kêmasî ve 4 deriyên wê yên gumrukî li sînorê Kurdistana Îranê hene.
*(rudaw.net, 19.05.2016)*

**BORANA ABORÎ LI KURDISTANÊ**
Dema ku serokê îranî Hasan Rûhanî hati bû hilbijartin, dihat pêşbînî (texmîn) kirin ku ewê rewşa aborî ya Kurdistanê baştir bibe. Lê, berpirsiyarên fermî dibêjin ku bêkarî bilind dibe, nemaze di nav cuhanan de, û ku piraniya Kurdan bêkar in. Xwediyên firokşgehan (dikkan) jî ji sedema borana aborî (krîza êkonomîk) li Kurdistanê dêşin.

Li gora serjimartinên (statistiques) hukûmî, li bin kabîneya Rûhanî, her sal rêjeya (nisbet) bêkariyê 1% bilind dibe.
*(rudaw.net, 21.05.2016)*

**SEROKÊ ÎRANÎ LI KURDISTANÊ**
***Di 30 Gulan de***, serokê îranî Hasan Rûhanî çû Kurdistanê. Li Mahabadê, wî axaftinek li stadyuma Azadî kir. Wî tiştê ku par li bajarê Sinê goti bû dubare (tekrar) kir : *« Em bûn ku me Hewlêrê ji metirsiyê (tehlike) parast »*. Û wî got jî : *« Zimanê kurdî divê ku bê rûmet (hurmet) kirin »*. Wî got ku wezareta wî ya perwerdeyê bi bicîanîna bend 15 a destûrê xerîk (mijûl) e, ku li tenişta farisî, divê ku zimanên navçeyî jî bên hîn kirin.

Par, di seredana xwe ya pêşîn a Sinê de, wî soz da bû ku mafê perwerdekirina zimanê kurdî li dibistanên seretayî (yên pêşîn) bide. Lê, heta nuha, bitenê li Zanîngeha Kurdistanê Beşa Ziman û Wêjeya (edebiyat) Kurdî hat vekirin.

Rûhanî ne pejirand (qebûl ne kir, red kir) ku Komara Islamî cihêtî (ferq) di navbera mezheb û nijadan de datîne. *« Em hemî îranî û misilman in »*, wî got.
*(rudaw.net, 31.05.2016)*

**ŞERR LI DIJÎ REJÎMA SÛRÎ Û DEWLETA ISLAMÎ**



***Ji 2014 heta 2016 : 6.000 KES JI ALIYÊ REJÎMA SÛRÎ HATINE KUŞTIN***

Li gora ajansa çapemeniya brîtanî Reutersê, birêvebirê Têbînîgeha Mafên Mirov li Sûriyê, Ramî Ebdul-Rehman, daxuyand ku ji destpêka şerrê li Sûriyê de, ji kêmasî ve 60.000 kes li zîndanên rejîma Baas a sûrî hatine kuştin. Wî got ku wî ev jimar ji çavkaniyên van zîndanan û berpirsiyarên servîsên ewlehiyê, ku dixwazin ku cinayetên rejîma sûrî bên nas kirin, stendine.

Ebdul-Rehman got ku bitenê li zîndana Sêdnaya, li nêzîkî Şamê, ji 20.000 kes bêtir, ku ji wan 110 zarok, hatine kuştin.

Di Sibat 2016 de, lêgerên U.N.ê daxuyandi bû ku hukûmeta sûrî girtiyan bi kom (bi grûp) dikuje û U.N.ê ev yek « Tawanên li dijî Mirovahiyê » bi nav kir.

Di 2013 de, berpirsiyarekî kevn ê rejîma sûrî, ku jê veqetiya bû, bi hezaran fotoyên van girtiyên kuştî raxistin (nîşan dan).
*(rudaw.net, 22.05.2016)*

***ŞERR LI DIJÎ DEWLETA ISLAMÎ Û LEŞERÊ SÛRÎ***

***Sînorê tirkî : 48 « DAIŞ » hatin kuştin***

Fermandarê leşkerî yê tirk daxuyand ku di ***07 Gulan*** de, hêzên hevalbend ên navneteweyî navçeyên Baragita, Kilis, Harcele û Delha bombe kirin. 44 şervanên Dewleta Islamî hatin kuştin. Û li navçeya Kara Köprü jî bombe hatin avêtin. 4 DAIŞ hatin kuştin. Bi ser de jî, gelek kes birîndar bûn.
*(rudaw.net, 07.05.2016)*

***Sînorê tirkî : DAIŞ çavdêriya çend gundan dike***

Li gora Têbînîgeha Sûrî ya Mafên Mirov, Dewleta Islamî ber bi sînorê sûrî-tirkî û navçeya Ezazê pêş de diçe. Wê çend gund li Bakurê Helebê stendin, û bi vî awayî, Marea ji Helebê birrî.
*(rudaw.net, 27.05.2016)*

***El-Hol, girêdayî Hesîçê***

Yekîneyên Parastina Gel, ên paritya PYD, destûr (izn) da rûniştevanên bajarokê El-Holê ku vegerin malên xwe. Ew neçar (mecbûr) bû bûn ku di Kanûn 2015 de, di dema êrîşa mezzin a Hêzên Dêmokratîk ên Sûrî de, bi serokatiya PYD, jê birêvin. Van Hêzan dilniya (te'kîd) kir ku wan bajar ji mînan (lexm) paqij kir.
*(kurdwatch.org, 06.05.2016)*

***Qamişlî***

***Di 07 Gulan de***, pevçûn di navbera Asayiş û hêzên hukûmeta sûrî de, li bazara Qamişlî, bûn.Hin firoşgeh (dikkan) hatin girtin.

Ji berê, ji 21 heta 23 Nîsan 2016, pevçûn di navbera van her du aliyan de bû bûn û wan li ser 8 xalan li hev kiri bû (li bultena me ya buhurî binêre).
*(rudaw.net, 08.05 ; kurdwatch.org, 14.05.2016)*

***Di 14 Gulan de***, ciyekî şuştina erebeyan teqiya. 2 kes hatin kuştin û 2 jî birîndar kirin. Sedema teqînê ne aşkere ye.
*(kurdwatch.org, 18.05.2016)*

***Di 21 Gulan de***, di demjimêr 23 de, pevçûn di navbera hêzên fille yên Sotoro û Hêzên Sûriya Dayik de bûn. 3 êrîşên xwekuj li 3 ciyan bûn. Dewleta Islamî ew daxuyandin. 3 kes mirin û 6 jî birîndar bûn. 3 erebe hatin şewitandin.
*(rudaw.net, 21.05; kurdwatch.org, 30.05.2016)*

***Girkê Legê***

***Di 09 Gulan de***, serê sibê zû, bombeyek li ketina hundir a Encumena Niştimanî ya Kurdî (ENKS) teqiya. 3 kes bi sivikî birîndar bûn. Kujer ne naskirî ne.
*(kurdwatch.org, 14.05.2016)*

***Efrîn***

***Di 11 Gulan de***, hêzên çekdar gundê Celemê, yê girêdayî Efrînê, bombe kir. Bitenê zararên maddî bûn.
*(rudaw.net, 12.05.2016)*

***Di 13 Gulan de***, komeke dijberiyê, bi navê "Batalyon 13", 4 rokêt avêtin ser Efrînê. Tu qurban ne bûn. Çend roj berê, vê komê qewirandina ajoyê (chauffeur) YPG xwesti bû, ji bo ku di 28 Nîsan de wî laşên kesên kuştî li bajar gerrandi bûn (li bultena me ya berê binêre).
*(kurdwatch.org, 18.05.2016)*

***Kobanî***
***Di 11 Gulan de***, şervanên Dewleta Islamî êrîşî Zewr Mexar, 30 km li Rojavaya Kobanî, ku ji aliyê YPG hatiye çavdêrî kirin, kir. Agahdarî li ser mirî yan birîndaran nîn in.
*(kurdwatch.org, 17.05.2016)*

***Taxa Kurdî ya Helebê***
Li gel agirbirrînê li Helebê, şerr li taxa kurdî Şêx Meqsûd dajo (dewam dike). Ji 3 mehan de, komên islamî êrîşî vê taxê dikin.
*(rudaw.net, 14.05.2016)*

***Hesîçê***
***Di 07 Gulan de***, nêzîkî 40 kesan li ber buroya Partiya Kurdî ya Dêmokrat û Pêşverû li Sûriyê, li Hesîçê, xwe pêşan da. Ev yek ji bo riswakirina (protêsto) êrîşên çend komên dijberiyê li ser taxa kurdî ya Helebê, Şêx Meqsûd, û li dijî êrîşên leşkerê tirkî li Nuseybînê, bajarekî Kurdistana Tirkiyê, ku nêzîkî sînorê sûrî ye.
*(kurdwatch.org, 19.05.2016)*

Pevçûn di navbera Asayiş û serbazên leşkerê sûrî de bûn. 1 Asayiş û 2 serbazên sûrî hatin kuştin. Sedema vê yekê ew bû ku Asayiş û hêzên asûrî yên “Sotoro” xwest ku navendeke ezmûnên (imtihan) xwendekarên pola 9mîn biparêzin.
*(rudaw.net, 18.05.2016)*

***Di 25 Gulan de***, Dewleta Islamî çend êrîşên xwekuj li xalên çavdêriyê yên YPG, li nêzîkî Şeddadî, 50 km li Başûrê Hesîçê, kirin. Ji kêmasî ve 4 YPG hatin kuştin û 20 jî birîndar bûn.
*(kurdwatch.org, 31.05.2016)*

***Tirbê Sipî***
Erebeya 3 şervanên kurd ên YPG li mînekê ket. 3 ji wan birîndar bûn.
*(kurdwatch.org, 14.05.2016)*

***Di 04 Gulan de***, erebeyeke YPG teqiya. 2 ji wan hatin kuştin.
*(kurdwatch.org, 19.05.2016)*

***Til Temr***
***Di 21 Gulan de***, 2 êrîşên xwekuj li xala çavdêriya Asayişê, li nêzîkî gundê El-Aliyê, ku girêdayî Til Temr e, bûn. 5 endamên Asayişê hatin kuştin.
*(kurdwatch.org, 27.05.2016)*

***Sînorê Kurdistana Iraqê***
***Di 22 Gulan de***, berpirsiyarê dosya Kurdistana Sûriyê li encumena serokatiya Kurdistana Iraqê, Dr. Hemîd Derbendî, û serokê TEV-DEMê (ku girêdayî partiya PYD ye), Aldar Xelîl, li deriyê sînorî Pêş Xabûr, di navbera Kurdistana Iraq û Sûriyê de, rastî hevdu hatin. Wan imkana ku pêşmergeyên Kurdistana Sûriyê (li jor binêre, şervanên ku ne girêdayî PYD ne) ji Kurdistana Iraqê derbas bibin Kurdistana Sûriyê, ji bo ku tê de şerr bikin, giftûgo kir.
*(avestakurd.net, 24.05.2016)*

***Munbic***
***Di 30 Gulan de***, piştî çend hefte amadekirin, bi hezaran şervanên kurd û hogirên wan ên ereb, yên Hêzên Dêmokratîk ên Sûriyê (HSD), dest bi tevgera azadkirina bajarokê Munbicê, yê girêdayî Kobanî û ku 30 km li Rojavaya çemmê Firatê ye (li nêzîkî sînorê Kurdistana Tirkiyê), kir. Van hêzan 9 gundên vê navçeyê rizgar kirin û ew 20 km li nêzîkî Munbicê ne.

Tevger bi piştgiriya ezmanî ya hêzên hevalbend, ku berê rojekê, di ***29 Gulan*** de, 9 bombe li ser Dewleta Islamî avêti bûn, bû. Eva dawîn ji destpêka 2014 de Munbic stendiye.

Di Çile 2015 de, li gel dijminayiya mezzin a Tirkiyê, bendava Teşrînê, li ser çemmê Firatê, bi piştgiriya hêzên ezmanî yên hevalbend, hati bû rizgar kirin.
*(rudaw.net, 31.05.2016)*

***4 Dewlet li Sûriyê***
5 sal piştî destpêkirina şerr li Sûriyê, nuha axa sûrî di 4 perçeyên ku ji aliyê komên cihê yên çekdar de hatine çavdêrî kirin de veqetiyaye : 1- Dewleta Islamî 49%. 2- Hukûmeta sûrî 27%. 3- Kurd 15%. 4- Dijberiya Jebhett El-Nusra 8%.
*(rudaw.net, 04.05; avestakurd.net, 05.05.2016)*

***Erebên Mûsilê ber bi Kurdistana Sûriyê direvin***
Bi sedan Erebên iraqî yên Mûsilê ji şevanên Dewleta Islamî ber bi Kurdistana Sûriyê direvin. YPG li bin konên katî (muweqqet) pêşwaziya wan dikin û pêwîstiyên wan ên rojane dabîn (te’mîn) dikin, lê wan nahêlin ku bi azadî bigerrin.
*(rudaw.net, 07.05.2016)*

***263 Kurd li Kurdistna Iraqê dixwînin***
Zanîngehên Kurdistana Iraqê îsal 263 xwendekarên zanîngehên sûrî, yên Şam, Hums, Heleb û Teşrînê, tomar (qeyd) kirin. Ji sedema şerr li van bajaran, ev xwendekar diviya bûn ku jê birevin.
*(rudaw.net, 07.05.2016)*

***Gelek Rojavayî li tenişta Kurdan şerr dikin***
Rojnameya brîtanî The Independent rapporek weşand û tê de got ku jimareke mezzin ji Rojavayiyên cuhan welatê xwe berdidin û diçin Iraq û Sûriyê, ji bo ku xwe bigihînin hêzên kurdî. Rappor dibêje jî ku ev cuhanên mirovî (humaniste) yan çepgir in û ku ji sedema derengbûna tevgera rizgarkirina Mûsilê, gelek ji van cuhanan nuha bêkar in û li mêvanxaneyên (hôtels) Suleymaniyê, li Kurdistana Iraqê, dijîn. YPG ji wan re

dibêjin ku ew nema dikarin masrafên wan bikişînin û ku divê ku ew vegerin welatên xwe.
*(rudaw.net, 22.05.2016)*

***ŞERRÊ REQQA, PAYTEXTA DEWLETA ISLAMÎ***

Bi piştgiriya firokeyên hêzên navneteweyî yên hevalbend, 20.000 şervanên kurd ber bi bajarê Reqqayê, yê Sûriyê, ku weka paytexta Dewleta Islamî tê dîtin diçin (li Iraqê, paytexta wê Mûsil e). Ev şervanên kurd beşek ji Hêzên Dêmokratîk ên Sûriyê "HSD", kutê de Asûrî, Suryanî, Ereb … jî hene, ne. Û 300 rawêjkarên (şêwirmend) leşkerî yên amerîkî hogiriya wan dikin (bi wan re diçin).

Dewleta Islamî gelek mîn (lexm) li rodar Reqqa danîn. Ji 3 rojan de, firokeyên hevalbendan belavok davêjin ser rûniştevanên bajar û tê de ji wan dixwazin ku jê derkevin. Li Reqqa 650.000 kes dijîn.
*(rudaw.net, 21.05.2016)*

***Di 24 Gulan de***, Hêzên Dêmokratîk ên Sûriyê, ku YPG'yên kurd jî tê de hêza sereke ne, ji 3 aliyan, ji bajarên Eyn Îsa û Girê Sipî, dest bi êrîşeke mezzin kir. Ew ji aliyê firokeyên hêzên hevalbend hatin piştgirî kirin. Di heman rojê de, wan gundê Qertacê û du gundên (mezre'e) wê rizgar kirin. Piştre, wan 8 gundên din û ciyên stratêjîk rizgar kirin.

Dewleta Islamî daxuyand ku 23 ji şervanên wê hatin kuştin. Û HSD (Hêzên Sûriya Dêmokratîk) jî daxuyand ku di êrîşeke xwekuj de, Dewleta Islamî yek ji şarvanên wan kuşt û çend jî birîndar kirin.

***Di 27 Gulan de***, YPG daxuyand ku heta nuha 16 gundên Reqqa hatin rizgar kirin, ku wan dest bi çavdêrîkirina (kontrol) Bakurê vî bajarî kir û ku mînên ku Dewleta Islamî danîne nahêlin ku ev pêş ve biçin.

Ji 2013 de, Reqqa ji aliyê Dewleta Islamî hatiye çavdêrî kirin. Di 29 Hezîran 2014 de, wê "Xelîfe'ya xwe li Reqqa daxuyandi bû. 3 meh şûn de, firokeyên hêzên hevalbend dest bi êrîşên xwe yên ezmanî yên pêşîn kir. Reqqa li Baurê çemmê Diclê, nêzîkî 160 km ji Helebê, ye.

Berê şerr, jimara rûniştevanên Reqqa digihajt 220.000. Lê nuha, ev jimar daket 120.000.

Bajarê Reqqa gelek stratêjîk e, ji bo ku ew 2 parêzgehên (wilayet) girîng ên Sûriyê, yên Heleb û Dêr El-Zorê, digihîne. Loma, ew paytexta psîkolojîk û sembolîk a Dewleta Islamî ye. Eger ew bikeve, ev tê wateya (ma'na) ku ewê Dewleta Islamî bikeve.
*(rudaw.net, 24, 25, 27 û 29.05; kurdwatch.org, 31.05.2016)*

***ŞERR LI KÊLEKA DERYAYÊ SÛRÎ***

***Di 23 Gulan de***, rêzeyeke bombeyan li bajarên sûrî yên li kêleka derya, Jeble û Tertûs, li parêzgeha Laziqiyyê, teqiya. Ji kêmasî ve 101 kes hatin kuştin. Dewleta Islamî xwedî li vê yekê derket. Gelek ji rûniştevanên wan Elewî, mezhebeke şîî ku ji aliyê DAIŞê weka ne misilman tê dîtin, in.

Piraniya firokeyên leşkerê rûsî ku şerrê Dewleta Islamî dike bingeheke wan li Laziqiyyê heye û li Tertûsê jî enbareke wan li keştiyên (gemî) şerr heye.
*(rudaw.net, 23.05.2016)*

**FERMANDARÊ HÊZÊN AMERÎKÎ LI KURDISTANÊ YE**

Li gora kanala têlêvîzyona amerîkî CNNê, fermandarê hêzên navendî yên amerîkî, Gênêral Joseph Votel, bi dizzî çû seredana Kurdistana Sûriyê û bi berpirsiyarên leşkerî yên kurd re, li ciyên cihê, giftûgo kir.

Hêzên taybetî yên amerîkî rahênana (tedrîb) YPG û Hêzên Dêmokratîk ên Sûrî dikin. Ewê 250 serbazên din jî bên şandin.

Di Sibat 2016 de, Brett McGurk, nimînendeyê (temsîlcî) serokê amerîkî Barak Obaman, çû bû seredana Kurdistana Sûriyê û bi berpirsiyarên kurd re li Kobanî civiya bû.
*(rudaw.net, 21.05.2016)*

**LEŞKERÊ TIRKÎ KEÇEKÊ LI SERÊ KANIYÊ BIRÎNDAR DIKE**

Çavdêrîgeha Sûrî ya Mafên Mirov got ku hêzên tirkî li Serê Kaniyê, li nêzîkî sînorê tirkî, agir berda keçeke piçûk. Ew birîndar bû û çend ajelên (heywan) ku wê xwedî dikirin hatin kuştin. Mêdyayên cihî (lokal, mehellî) dibêjin ku ew 15 salî ye.
*(rudaw.net, 16.05.2016)*

**LEŞKERÊ TIRKÎ EFRÎNÊ BOMBE DIKE**

***Di 27 Gulan de***, leşkerê tirkî dest bi bombekirina navçeya Efrînê kir. PYD daxuyand ku gundê Tata Meraşê hati bû amanc kirin û ku 3 bombe li dora wî ketin. Tukes ne hat kuştin, lê xanî û hebûnên rûniştevanan hatin têk dan (xerab kirin).
*(rudaw.net, 27.05.2016)*

**FÊRÊN BI ZIMANÊ KURDÎ YÊN « PYD »**

Fêrên bi zimanê kurdî li 3 kantonên Cezîrê, Kobanî û Efrînê (birêvebiriyên partiya PYD) dest pê kir. Ev yek, ji bo gihandina mamosteyên vî zimanî, ji bo sala dibistanî ya 2016-2017. Hukûmeta sûrî nerazîbûna xwe nîşan da.

Di bernameya gihandinê de ziman û wêjeya (edebiyat) kurdî, civak û jiyan, dîrok, felsefe, enformatîk û ingilîzî hene. *(rudaw.net, 11.05.2016)*

**XWEPÊŞANDAN LI DIJÎ PEYMANA « SYKES-PICOT »**
***Di 14 Gulan de***, Encumena Niştimanî ya Kurdî li Sûriyê (ENKS) xwepêşandan li Qamişlî, Amûdê, Til Temr, Dêrik, Çil Axa, Girkê Legê, Tirbê Sipî, Dirbêsiyyê û Serê Kaniyê pêk anîn. Ev yek, bi hinceta (munasebet) 100 saliya Peymana navdar a ingilîzî-fransî « Sykes-Picot », ku bû sedema perçekirina Kurdistanê di 4 perçeyan de, di 16 Gulan 1916 de.

Partiya PYD li Girê Legê, Tirbê Sipî û Dirbêsiyyê ne hişt ku ev xwepêşandan bibin. Li Girkê Legê, Asayişê, servîsên ewlehiyê yên PYD, xwepêşandiyek, Muhammed Ata Şêxmûs, revand. Li Çil Axa, cuhan hatin birin leşkeriya YPG, yekîneyên parastinê yên PYD.
*(kurdwatch.org, 19.05.2016)*

**4.266 PENABERÊN IRAQÎ DIGIHÎJIN KURDISTANÊ**
Kommisarya Bilind a Penaberan a U.N.ê di Gulan 2016 de daxuyand ku 4.266 penaberên iraqî, yên Mûsil û navçeyên dorpêçkirî, gihajtin kampa El-Hewlê, li parêzgeha Hesîçê, 14 km ji sînorê Kurdistana Iraqê. UNHCR pêşbînî (texmîn) dike ku ewê bêtir penaber werin û ji Urdunê alîkariya mirovî ji bajarê Qamişlî, li Kurdistana Sûriyê, re anî.

Parêzgeha Hesîçê, li Kurdistana Sûriyê, pêşwaziya ji 100.000 bêtir penaber, ku 90.000 ji wan penaberên hundirî û 16.000 Iraqî ne, dike. Lê UNHCR dibêje ku nuha, ji sedemên ewlehiyê (emniyyet), ew nikare ji wan re alîkariya mirovî ji hundirê Sûriyê û ji Tirkiyê bîne.
*(rudaw.net, 28.05.2016)*

**KÊMBÛNA DERMANAN LI QAMIŞLÎ**
Hukûmeta sûrî ne hişt ku şirketa sûrî ya ezmanî dermanan ji Şamê bibe Qamişlî. Vê yekê rewşa nexweşên ku li nexweşxaneya vî bajarî ne têk bir (xerab kir).
*(rudaw.net, 31.05.2016)*

**CIVÎNA DIJBERIYÊ LI STANBULÊ**
Dijberiya sûrî li Istanbulê 3 rojan civiya. Wê çend biryar stendin :

- Destnîşandana hukûmeteke demkî (muweqqet) heta nîşankirina serokekî nuh ê komarê.
- Bilindkirina jimara jinan di vê hukûmetê de.
- Li ser agirbirrîna li taxa kurdî ya Helebê, "Şêx Meqsûd", her du komên islamî ku tê de şerr dikin, Jebhet El-Nusra û Dewleta Islamî, weka hev in (eynî ne).

*(rudaw.net, 01.05.2016)*

**NORVÊJ RAHÊNANA DIJBERIYÊ DIKE**
Serokwezîra Norvêjê, Erna Solberg, daxuyand ku ewê welatê wê 60 serbazan bişîne Urdunê, ji bo ku ew rahênana (tedrîb) şervanên sûrî bikin. Ji berê, Norvêjê 120 serbaz şandi bûn Iraqê.
*(rudaw.net, 03.05.2016)*

**PIŞTGIRIYA 100% YA ÎRANÊ JI REJÎMA SÛRÎ RE**
Li Konfêransa Gêopolîtîk a Neteweyî li Tehranê, rawêjkarê Rêberê Şoreşa Islamî, Rahîm Safawî, got ku Tehran 100% piştgiriya hukûmeta sûrî ya Beşşar El-Esed dike û ku heta ku ew karibe, ewê nehêle ku desthilata sûrî hilweşe (Esed elewî ye, mezhebeke şîî).

Bi ser de jî, Îranê piştgiriya xwe ya 100% ji partiya şîî ya lubnanî, Hizbullah, re nîşan da. Îranê dijberiya xwe ji ramyariyên (siyasetên) Amerîka li navçeyê jî nîşan da.
*(rudaw.net, 01.05.2016)*

**13 RAWÊJKARÊN ÎRANÎ HATIN KUŞTIN Û 21 BIRÎNDAR KIRIN**
***Di 07 Gulan de***, 13 rawêjkarên (muşawir) leşkerî yên îranî li gundê Xan Toma, girêdayî Helebê, hatin kuştin û 21 jî birîndar kirin.
*(rudaw.net, 08.05.2016)*

**PYD 2 NIMÎNENDETIYAN LI BERLÎN Û PARÎSÊ VEDIKE**
Birêvebiriya Xweser a Rojavayê (Kurdistana Sûriyê) buroyek li Berlînê vekir. Li merasîma vekirinê, nimînendeya (temsîlcî) vê birêvebiriyê li Ewropa, Sînem Muhammed; nimînendeyên partiyên ramyariyî yên Kurdistana Sûriyê û çend parlementerên alman û nimînendeyên rêxistinên almanî amade bûn. Sîpan Ibrahîm nimînendeyê li Almanya hat dest nîşan kirin (ta'yîn kirin).

Heta nuha, ev 3mîn nimînendetî li Ewropa ye : Rûsya (Mosko) û Swêd (Stokholm). Li Çêkya (Prag) jî nimînedetiyeke YPJ (Yekîneyên jin ên PYD) heye. Ev Birêvebiriya Xweser dixwaze ku nimînendetiyên din jî li Fransa, Danimarka û Amerîka veke.
*(rudaw.net, 07.05.2016)*

***Di 23 Gulan de***, heman Birêvebiriya Xweser buroyekê li Parîsê vekir. Ev kesahî amade bûn : Bernard Kouchner, wezîrê berê yê fransî yê karên derve û avakerê Bijîjkên (doktor) Bê Sînor; Bernard-Henry Levy, feylesûf û çêkerê fîlma belgeyî "Pêşmerge", ku li Fêstiala Fîlman a Cannes hat nîşan dan.

Sînem Muhammed got : *"Amanca me ya yekemîn şikandina têrrorîsmê û avakirina istiqrarê li Sûriyê ye".*

Navçeya Fêderal a Rojava "Kurdistana Sûriyê", ku ji aliyê PYD hatiye ava kirin, ji aliyê hukûmeta sûrî "illêgal" hat daxuxyandin. Bi ser de jî, ew ji aliyê Fransa, ku Encumena Niştimanî ya Sûrî weka nimînendeya (temsîlcî) rewa ya gelê sûrî dibîne, bi awakî fermî ne hatiye nas kirin.

Heta nuha, ev Navçeya Fêdêral a PYD 5 nimînendetî, li Mosko, Stokholm, Praq, Berlîn û Parîsê, vekirine.
*(rudaw.net, 24.05.2016)*

**TIRKIYE LI DIJÎ VEKIRINA BUROYÊN PYD**
Serokê tirk Recep Tayyı Erdoğan, serokwezîrê nuh Binali Yıldırım, efserên (zabit) bilind ên leşker û servîsên dizzî yên tirkî bi lez ji Yekîtiya Ewropî xwest ku vekirina buroyên partiya kurdî ya Sûriyê, PYD, li bal xwe nepejirînin (qebûl nekin), ji bo ku ev partî girêdayî PKKê, ku têxistineketêrrorîst e, ye.
*(rudaw.net, 27.05.2016)*

**ENKS "JENÊV 3" GIFTÛGO DIKE**

Encumena Niştimanî ya Kurdî li Sûriyê (ENKS) li Qamişlî civiya, ji bo giftûgokirina "Jenêv 3" (li bultena me ya buhurî binêre). Ji bo ku, li gel hebûna nimînendeyên (temsîlcî) wê li nav şanda dijberiya sûrî li Jenêvê, heta nuha pirsa kurdî tê de nehat giftûgo kirin.
*(rudaw.net, 08.05.2016)*

**"PYD" LI WAŞÎNGTONÊ**
Hev-serokaEncumena Sûriya Dêmokratîk, Ilham Ehmed, û berpirsiyara Birêvebiriya Xweser a Rojava (Kurdistana Sûriyê), Sînem Muhammed, çûn Waşîngtonê û tê de rastî berpirsiyarên amerîkî hatin.

Ilham Ehmed got ku Amerîkiyan ji wan re got ku ew xwe naxinnav karên wan û ku pergala (système) fêdêral ne xerab e, lê ku divê ku hemî Sûrî li ser wê li hev bikin.

Di Çile 2016 de, nimînendeyê serok Obama, Bret McGurk, çû bû bajarê kurdî yê rizgarkirî, Kobanî, û bi YPG re civiya bû.
*(rudaw.net, 24.05.2016)*

**TIRKIYE PIŞTGIRIYA AMERÎKA JI "YPG" RE TAWANBAR DIKE**
***Di 28 Gulan de***, serokê tirk Recep Tayyıp Erdoğan çû Diyarbekirê, Kurdistana Tirkiyê, û tê de axaftinek kir. Wî Amerîka bi piştgirîkirina *"xerab"* ji YPG re, ku dirêjayiya PKK'ya *"atêist"* (ê ku bi Xwedî bawer nake) e, re tawanbar kir. Û wî got jî : *"Di navbera PKK, PYD, YPG û DAIŞ ferq nîn e"*.

Serokwezîrê tirk ê nuh, Binali Yıldırım, jî di axaftina xwe de got : *"Têrrorîstên PKKê tu girêdana wan bi pirsa kurdî re nîn e. Divê ku her kes zanibe ku em dikarin riyan yan nanê xwe perçe bikin, lê emê tucar nehêlin ku tukes welat perçe bike"*.
*(rudaw.net, 28.05.2016)*

**PYD LI DIJÎ KURDÊN DIN**

***Sînorê Kurdistana Iraqê***
***Di 22 Nîsan de***, servîsên ewlehiyê yên partiya kurdî PYD, Asayiş, nifir kir Kurdekî sîvîl û ne hişt ku ew biçe Kurdistana Iraqê ji bo ku bijîjk (doktor) lê binêrin. Ew di pevçûnên di navbera YPG û mîlîsên rejîma sûrî de li Qamişlî birîndar bû bû. Hukûmeta Kurdistana Iraqê pêşniyar kiri bû ku bijîjk lê binêrin.
*(Kurdwatch.org, 30.04.2016)*

***Di 04 Gulan de***, Asayişê ji şandeke ENK-Sê re qedexe kir ku ji deriyê sînorî yê Sêmalka, ji Kurdistana Iraqê derbasî Kurdistana Sûriyê bibe.
*(rudaw.net, 04.05.2016)*

Çalakvana kurd Emîre Temo, ji Girkî Legê, dixwest ku tevî 4 zarokên xwe biçe seredana Kurdistana Iraqê. Asayişê ew ragirt û xist zîndanê. Zarokên wê li Kurdistana Iraqê ne.
*(avestakurd.net, 14.05.2016)*

***Qamişlî***
***Di 28 Nîsan de***, Asayişê bi zorê nêzîkî 50 xort, li xalên çavdêriyê yên cihê, birin leşkeriyê.
*(kurdwatch.org, 30.04.2016)*

***Di 08 Gulan de***, Asayişê serokê cihî (mehellî) yê ENKSê, Şemdîn Nebî, ragirt û piştre, 2 demjimêr şûn de ew azad kir. Wî daxuyand ku Asayişê nifir li wî kir û lê xist.
*(avestakurd.net, 08.05.2016)*

***Girkê Legê***
***Di 22 Gulan de***, bi şev, Asayişê êrîşî gundên Girê Legê, li navçeya Koçeratê, kir.
*(rudaw.net, 23.05.2016)*

***Di şeva 24-25 Nîsan de***, 2 kesên rûgirtî buroya Encumena Niştimanî ya Kurdî li Sûriyê (ENK-S), ku tê de partiyên ramyariyî ku ne girêdayî PYD ne hene, şewitand. Hevsiyan (cîran) zû şewat vemirand.

***Di 26 Nîsan de***, encumena cihî ya ENK-S xwepêşandanek li ber avahiya xwe pêk anî. Nêzîkî 50 kesan êrîşên alîgirên PYD li ser endamên rêxistinên ENK-Sê riswa (protêsto) kir.
*(kurdwatch.org, 30.04.2016)*

***Til Temr***
***Di 26 Nîsan de***, Asayişê bi zorê 3 zilam birin leşkeriyê.
*(kurdwatch.org, 30.04.2016)*

***Di 28 Nîsan de***, Asayişê deriyê Partî Dêmokratî Kurdistan - Sûriye (El-Partî) muhr kir. Sedema vê yekê ew bû ku vê partiyê destûr ji PYD ne stend. Berê çend rojan, deriyên 2 partiyên din, ji bo heman (eynî) sedemê, hati bûn muhr kirin.
*(kurdwatch.org, 30.04.2016)*

***Dirbêsiyyê***
***Di 05 Gulan de***, kesên nenas ji ser deriyê buroya ENKSê plaka ku navê wê hilgirti bû rakir.
*(kurdwatch.org, 14.05.2016)*

***Bexişandin li Cezîrê***
***Di 09 Gulan de***, birêvebiriya Kantona Cezîrê 84 girtiyên ku cezayê wan ji 4 salan kêmtir bû azad kirin. Ên ku 5 sal û bêtir stendine, ewê cezayê wan 25% kêm bibe.
*(avestakurd.net, 09.05.2016)*

***Kobanî***
Malbateke kurd li gundê Bîrxatê, yê girêdayî Kobanî, daxuyand ku YPG 2 keçên 11 salî bi zorê birin leşkeriyê. Berê çend rojan, keçeke din a 11 salî, ji gundê Kurikê, jî bi zorê hati bû birin.
*(rudaw.net, 11.05; avestakurd.net, 12.05.2016)*

***Pêşmerge "xayin" in!***
Aldar Xelîl, yek ji berpirsiyarên PYD, got ku şervanên kurd ên ne PYD (ji wan re pêşmerge, weka yen Kurdistana Iraq û Îranê, tê gotin) xayin in! PYD ew ne hiştin ku ji Kurdistana Iraqê, ku tê de rahênana leşkerî stendi bû, derbasî Kurdistana Sûriyê bibin û naxweze ku bi wan re hevkarî, ji bo şerkirina Dewleta Islamî bikin, bike.

Vê helwestê nerazîbûneke mezzin li bal Kurdan derxist û gelek karîkaturên Aldar Xelîl hatin çêkirin.

Ev hêza pêşmerge berê nêzîkî 4 salan li Kurdistana Iraqê ava bû bû û ew tê de beşdarî gelek şerran li dijî Dewleta Islamî bû bû, lê heta nuha wê nikari bû ku beşdar bibe vî şerrê Kurdistana Sûriyê, ji sedema nehiştina partiya PYD.

Eger em werin parêzgarê Hesîçê (mezzintirîn parêzgeh li Kurdistana Sûriyê), Muhammed El-Zeaal (Ereb), di hevpeyvînekê de got ku Aldar Xelîl hevalê wî ye û ku ew gelek caran rastî wî tê. Û wî got jî ku birêvebiriya xweser (ku ji aliyê PYD hatiye ava kirin) xizmeta dewleta wî dike û ku ew spasiya wê dike.
*(avestakurd.net, 20 û 22.05.2016)*

***Amûdê***
***Di 23 Gulan de***, demjimêr 4 a serê sibê, hêzeke mezzin a Asayişê êrîşî gundên Sîkra û Tebqe kir. Ew tê de li cuhanan gerriyan, ji bo ku wan bi zorê bibin xizmeta leşkerî.

***Di 23 Gulan de***, Asayişê gundên El-Cewheriyye, Til Hebeş û Kirinko dorpêç kirin.
*(rudaw.net, 23.05.2016)*

***Di 23 Gulan de*** jî, YPG bi zorê çend cuhanên gundên Amûdê, Kirinko, Gir Ziro, Gir Ziyaret, Tabwa, Cewhere û Til Hebeş, birin leşkeriyê.
*(kurdwatch.org, 30.05.2016)*

***Di 25 Gulan de***, encumena cihî ya Encumenta Neteweyî ya Kurdî xwepêşandanek li dijî siyasetên PYD pêk anî. Nêzîkî 200 kesan duruşmên (slogan) *"Na ji revandina zarokan re", "Na ji leşkeriya neçarî re", "Na ji Mirina ji Birçîbûnê re", "Na ji Êrîşên Malan re"*avêtin.
*(kurdwatch.org, 31.05.2016)*

Asayiş ket nav mala Ewer Naso, endamê polîtburoya Partiya Yekîtî ya Kurdî li Sûriyê "Yekîtî", û Abdullah Ocê, endamê encumena navendî ya heman partiyê, û ew birin ciyekî nenas. Û wê komptyûter û belgeyên wan birin. Ev tevger li ber çavên zarokên wan bû.
*(rudaw.net, 28.05.2016)*

Komeke çekdar serokê şaxa Amûdê ya ENKSê (Encumena Neteweyî ya Kurdî li Sûriyê, ku
ne girêdayî PYD ye), li nêzîkî mala wî revand. Piştî êşkencekirina wî, wê ew avêt ser riya Dirbêsiyyê. Heta nuha, gelek kes ji aliyê heman erebeya sipî, "mark Van", hatine revandin.
*(avestakurd.net, 31.05.2016)*

***Efrîn***
***Di 24 û 25 Gulan de***, Asayişê bi zorê cuhan li xalên cihê yên çavdêriyê yên Efrîn, Reco, 25 km li Bakurê Rojavaya Efrînê, û Basûta, nêzîkî 8 km li Başûrê Efrînê, birin xizmeta leşkerî. Jimara kesên revandî ne hatiye nas kirin.
*(kurdwatch.org, 31.05.2016)*

***Di 26 Gulan de***, TEV-DEMê (li jor binêre) civandineke vekirî li navenda bajarokê Bilbilê, 30 km li Bakurê Efrînê, pêk anî, ji bo ku bi aşkere ji xelk bixwaze ku 2 kesan bi hilbijartin ceza bike, ji bo ku wan nifir kiri bû YPG. Xelk deng da 3 cezayên mumkun : 1- 6 meh zîndan. 2- perwerdeya îdêolojîk. 3- Şandina eniyê.
*(avestakurd.net, 27.05; Kurdwatch.org, 30.05.2016)*

# NÛÇEYÊN NAVNETEWEYÎ

**KOÇBERÎ LI CIHANÊ**

***8 milyon û 600.000 penaber***
Çavdêrîgeha Rewşa Koçberan rappora xwe ya 2015 weşand û tê de got ku di wê salê de 8 milyon û 600.000 penaber li cihanê hebûn û ku piraniya wan ji Sûriye, Iraq û Yemenê hati bûn.

Rappor dibêje ku eger em jimara yên 2014 û salên berê jî deynin ser wan, ewê ev jimar bigihîje 40 milyonan.

Li gora vê rêxistinê, ev pêla mezzin a koçberiyê bi bûyerên Behara Erebî ya dawiya sala 2010 û derketina Dewleta Islamî (DAIŞ) dest pê kir.

Sekreterê giştî yê Encumena Norvêjî ya Penaberan, ku wî jî ev rappor wajo (imza) kiriye, daxuyand ku jimara penaberan di sala buhurî de di dîrokê de ya bilindtirîn e.
*(rudaw.net, 11.05.2016)*

**ALMANYA**

***Jineke kurd dibe seroka parlementekê***
Di Adar 2016 de, hilbijartinên parlementerî li navçeya Baden-Wurttembergêbûn. Jinek ji Kurdistana Tirkiyê, Muhterem Aras, bi 42.4% ji dengan, bû serok. Ew 50 salî ye û endama Partiya Keskan e. Ev cara yekemîn e ku jineke kurd dibe seroka vê parlementê.

Aras di 1966 de, li Çewlikê (Bingöl), ji malbateke Kurdên elewî, bûye. Wê di 1978 de koçî Almanya kir. Di 1992 de, bû endama Partiya Keskan. Di 2011 de, weka parlementer, bi 42,5%, hat hilbijartin. Ji bo ku wê mezzintirîn jimara dengan di van hilbijartinan de stendi bû, navê "Şahzadeya Dengan" lê hat kirin. Ev nav ma, ji bo ku li van hilbijartinên dawîn ên serokatiya vê parlementê, wê careke din bêtirîn deng stendin.
*(rudaw.net, 11.05.2016)*

***10.000 misilman bûn fille***
Li gora nûçegihana ajansa çapemeniya kurdî Rûdawê li Almanya, di 6 mehên dawîn de, nêzîkî 10.000 penaberên misilman bûn fille.
*(rudaw.net, 20.05.2016)*

***5 penaberên kurd ên yezîdî ji aliyê Çeçenên misilman tên birîndar kirin***
***Di 21 Gulan de***, bi şev, li kampeke penaberan li Bielefeldê, pevçûnek di navbera 10-15 Kurdên yezîdî û Çeçenên misilman de bû. 5 Yezîdî hatin birîndar kirin. Polîs ket navberê û got ku dar, kevvir û kêr hatin bi kar anîn. 2 Çeçen hatin ragirtin û Yezîdî hatin birin kampeke din, li nêzîkî Herfordê.
*(rudaw.net, 23.05.2016)*

***Jineke kurd alîkariya penaberan dike***
Tara Şewket, karkereke civakî ya kurd li Navenda Bratungê, li bajarê Moneimê, alîkariya penaberên ji hemî neteweyan dike ku pirsên xwe çare bikin. Wê ji ajansa kurdî Rûdawê re got ku ev kes pirsên wan ên malbat, ziman, xanî … hene û ku ew di hemî van waran de alîkaiya wan dike.
*(rudaw.net, 24.05.2016)*

**ENCUMENA EWLEHIYÊ YA U.N.ê**

***Pirsa komên islamî ne bitenê ewlehiyî ye***
***Di 11 Gulan 2016 de***, 70 endamên Encumena Ewlehiyê ya U.N.ê civiyan û biryar stend ku stratêjiyeke navneteweyî bi cî bînin, ji bo têkoşîna li dijî îdêolojiya Dewleta Islamî li nav civakê.

Ji bo cara yekemîn, 15 salan piştî bûyerên 11 Îlonê, U.N.ê itiraf kir ku pirsa komên weka El-Qaide û Dewleta Islamî ne bitenê ewlehiyî (emnî) ye, lê ku ew îdêolojîk e jî û ku divê ku li dijî vê yekê bê li ber xwe dan.
*(rudaw.net, 12.05.2016)*

**MISR**

***Şêxê zanîngeha El-Ezherê : Pêşmerge şehîd in***
Sekreterê giştî yê Akadêmiya Lêgerînên Islamî li zanîngeha El-Ezherê, Şêx Muhyeddîn Efîfî, got ku pêşmergeyên ku di şerrê li dijî Dewleta Isamî (DAIŞ) de dimirin şehîd in.

Zanîngeha El-Ezherê mezzintirîn navenda islama sunnî li Misrê ye û weka ciddîtirîn tê nasîn.
*(rudaw.net, 12.05.2016)*

**BÎRANÎNA PEYMANA SYKES-PICOT**

***Kurdistana Tirkiyê***
Bi hinceta 100mîn sersaliya Peymana ingilîzî-fransî ya Sykes-Picot, ku di 16.05.2016 de Kudistan di nav 4 perçeyan de dabeş kir, 5 partiyên ramyariyî (siyasî) yên kurdî ev peyman tawanbar kir û bangî Kurdan, li Ewropa jî, kir ku xwe pêşan bidin (bimeşin). Ev partî ev in : Partiya Azadiya Kurdistan (PAK), Partiya Kurdistan (PAKURD), Partî Dêmokratî Kurdistana Tirkiyê (PDK-BAKUR), Partiya Sosyalîst a Kurdistan (PSK) û Tevgera Azadiyê (Hereketa Azadî).
*(rudaw.net, 05.05.2016)*

***Amed (Diyarbekir), li Kurdistana Tirkiyê***
Çalekiyên cihê li ser vê babetê hatin kirin :

Partiya Sosyalîst a Kurdistan (PSK) daxuyaniyeke çapemeniyê kir û tê de got ku Kurd vê peymanê nape-

jirînin (qebûl nakin) û ku dixwazin ku ew bixwe wêneya çarenivîsa (qeder) xwe çêbikin. Sekreterê wê yê giştî, Mesud Tek, got : *"Divê ku şaşiya Sykes-Picot dubare nebe û divê ku Kurd bê statu neyên hiştin. Divê ku Kurd mafên xwe bistînin"*.

Partiya Azadiya Kurdistan (PAK) panêlek li ser vê babetê pêk anî. Tê de hat gotin ku Kurd aktorekî sereke li Rojhilata Navîn in û ku divê ku Sykes-Picot bê rakirin. Pisporê jêopolîtîk, Dr. Ali Tatar, di vê panêlê de got : *"Em bi biryar in. Di nêzîk de, ewê serxwebûna Kurdistanê bê daxuyandin. Me bi hezaran şehîd, bi sed hezaran qurban (Enfal) dan. Nuha, 1.700 pêşmerge li eniyan hatin kuştin û 9.000 jî birîndar bûn, çav, dest û serên xwe hunda kirin. Hemî ev tişt hatin kirin ji bo ku em karibin bijîn"*.
*(rudaw.net, 13, 14 û 15.05.2016)*

***Kurdistana Iraqê***
***Di 13 Gulan de***, semînerek li Hewlêrê ji aliyê rêxistinên civaka sîvîl hat pêk anîn. Serokê Kurdistanê, Mesûd Berzanî, li ser vê babetê daxuyaniyek weşand.
*(avestakurd.net, nefel.com, 16.05.2016)*

***Di 18 Gulan de***, bi amadebûna jimareke mezzin ji ramyar (kesên siyasî), nivîskar û ronakbîran, Navenda Lêgerînan a Rûdawê, ku nuh hatiye vekirin, panêlek bi navê "Ji Piştî Daişê ber bi Piştî Sykes-Picot" pêk anî. Li bin birêvebiriya Mamend Roje, ev pispor beşdar bûn : Azad Elî, Hawrê Baxewan, Bilal Sambur, Ebdulrehman Derwêş, Mesûd Rustemî û Hisam Destpîş.
*(rudaw.net, 18.05.2016)*

***Almanya***
***Di 14 Gulan de***, xwepêşandaneke mezzin li Kölnê bû. Bi hezaran Kurdên ku ji welatên ewropî yên cihê hati bûn beşdarî wê bûn, alên kurdî bilind kirin û xerxwebûna Kurdistanê xwest. Hin Alman û kesên din jî beşdar bûn.
*(rudaw.net, 14.05.2016)*

***Israîl***
Şolomo Brom, endamê Navenda Lêgerînên li ser Karên Ewlehiyê (INSS) û efserekî xanenişîn (zabitekî teqa'ud), ji kanala Rûdawê re daxuyand ku gelek mumkun e ku dewleteke serbixwe ya Kurdan bibe. Û wî got jî ku dibe ku Sûriye, Iraq û Lîbya nema weka berê bibin.
*(rudaw.net, 18.05.2016)*

**TIRKIYE**

***Zîrveya cihanî li ser koçberiyê***
***Di 23 û 24 Gulan de***, UNê li Istanbulê konfêransek bi navê "Zîrveya Mirovî ya Cihanî" pêk anî. Birêvebir û berpirsiyarên 125 welatan û pispor beşdarî wê bûn ji bo ku rewşa penaberan li cihanê giftûgo bikin.

Li gora statîstîkên UNê, di salekê de, nêzîkî 60 milyon kes ji sedema şerran bûn penaber. Sekreterê wê yê giştî, Ban Ki-Moon, got ku buceya UNê ji bo alîkarîkirina van penaberan têr nake û ku jê re 15 milyar dolar pêwîst in.

Bi vê hincetê, hev-serokên partiya kurdî HDP, Selahettin Demirtaş û Figen Yüksekdağ, nameyek ji sekreterê giştî yê UNê, Ban Ki-Moon, re nivîsîû tê de ramyariya (siyaset) partiya tirkî ya desthilatê, AKP, û serokê tirk Recep Tayyıp Erdoğan,rexne kirin. Wan jê xwest ku kirinên wan ên ji derveyî yasaya (huqûq) neteweyî û navneteweyî tehlîl bike. Û wan jê re got jî ku li navçeyên ku tê de HDP gelek deng stendin hatûçûn ji xelk re 65 caran hat qedexekirin û tevgerên leşkerî hatin kirin û ku di encama wan de kesên sîvîl jî bûn qurban.
*(rudaw.net, 23 û 24.05.2016)*

# NÛÇEYÊN ÇANDÎ YÊN KURDÎ LI CIHANÊ

**KURDISTANA TIRKIYÊ**

***Sempozyuma bijîjkên gelerî li Dersîmê***
***Di 27 Gulan de***, li Dersîmê 2mîn Sempoziuma (konfêransa mezzin) Maddeyên Saxkirinê (ên ku ji nexweşiyan rehet dikin), li eywana konfêransan a Jûreya (ode) Bazarganiyê ya Dersîmê bû. Ewê 4 rojan bajo. Li roja dawîn, ewê beşdar biçin seredana gundên ku ev bijîjkî (tib) hîn jî tê de tê kirin.

Ev sempozium ji aliyê Yekîtiya Xwedîkerên Mêşên Hungiv û Civata Parastina Jîngehê li Dersîmê hat pêk anîn. Şaredariya Dersîmê, navçeyên derdorê û rêxistinên civaka sîvîl piştgiriya wê kir. Mamosteyên zanîngehê, yasazan (huqûqnas), hundermend û bijîjkên gelerî yên kurd beşdar bûn.

Babet (mewz'û) ev bûn :Çandina Altêrnatîf, Pêwendî di navbera Jîngeh û Çandinê de, Çiya û Golên Pîroz, Giha û Lawirên (heywan) Pîroz, Maddeyên Saxkirinê û Bijîjkên gelerî yên Dersîmê …
*(rudaw.net, 27.05.2016)*

***Arşîvên nivîskarekî tên birin Dersîmê***
Arşîvên nivîskarê kurd ê ku wefat kir, Vecidi Timuroğlu, ku tê de 8.000 pirtûk hene, ji Ankara hatin birin Dersîmê, navçeya ku ew tê de bû bû (hati bû dinyayê).

Vicidi 48 pirtûk nivîsî bûn. Di 1983 de, wî cezayê 10 salan zîndan, ji bo « propaganda kurdîtî û kommunîsmê », stendi bû. Lê, berê ku bê girtin, ew reviya bû û veşartî dijiya.
*(rudaw.net, 20.05.2016)*

***Roja Zimanê Kurdî***
***15 Gulan*** Roja Zimanê Kurdî ye.Ji bo ku di 15.05.1932 de, hejmara pêşîn a kovara kurdî « Hawar »ê ji aliyê Mîr Celadet Bedir Xan li Şamê, li Sûriyê, hati bû weşandin. Ronakbîrên kurd ên cihê, ku weka wî ji Kurdistana Tirkiyê hati bûn sirgûn kirin, tê de gotar nivîsî bûn.

***Di 15 Gulan 2016 de***, çend rêxistinên çandî yên Kurdistana Tirkiyê ev bûyera gelek girîng pîroz kir.
*(rudaw.net, 15.05.2016)*

**KURDISTANA IRAQÊ**

***14mîn Fêstivala Ziman û Çand***
***Di 15 Gulan de***, li Hewlêrê 14mîn Fêstivala Ziman û Çand bû. Rêxistinên Ne Hukûmî « NGO » yên 15 welatan beşdarî wê bûn. Peyama wan ji cihanê re ew bû ku çand û zimanên cihê dikarin bi hev re di aşîtiyê de bijîn.
*(rudaw.net, 06.05.2016)*

***Fîlma « Angry Birds »***
Fîlma anîmasyonê « Angry Birds » (Çivîkên Hêrsbûyî), ku li Hoolyoodê hat çêkirin, cara yekemîn li Hewlêrê, li eywana sînema « Empire », hat nîşan dan. Piştre, ewê li Israîl, Finlanda û Amerîka jî bê nîşan dan.
*(rudaw.net, 11.05.2016)*

***Ajansa Rûdawê navendeke lêgerînan vedike***
***Di 18 Gulan de***, Tora Mêdyayî ya Rûdawê navendeke lêgerînan li Hewlêrê vekir. Merasîm bi amadebûna lêger, nivîskar, akadêmîk û ramyaran (siyasî) bû. Dr. Azad Elî, ji Kurdistana Sûriyê û mamosteyê zanîngehê, birêvebirê giştî yê vê navendê hat hilbijartin.
*(avestakurd.net, 20.05.2016)*

***Banga azadkirina lawir û çivîkan***
***22 Gulan*** Roja Cihanî ya Pirrengiya Byolojîk, ku ji aliyê UNê hatiye daxuyandin, e. Bi vê hincetê, Encumena Jîngehê ya Kurdistana Iraqê bangî xelk kir ku çivîk û lawirên (heywan) ku wan nêçîr kirine azad bikin. Ewê merasîmek li ser vê babetê di 22 Gulan de li Parka Şar, li Suleymaniyê, bê kirin. Li gora yasayên (qanûn) Kurdistanê, nêçîrkirina lawiran qedexe ye.
*(rudaw.net, 22.05.2016)*

***Civîna Koma Kurmancî***
58mîn civîna Koma Kurmancî (zaravê kurdî ku ji aliyê nêzîkî 65% ji Kurdan tê peyivîn) li Hewlêrê bû. Ev kes beşdarî wê bûn : Reşo Zîlan, Mustafa Aydoğan, Hamit Kılıçarslan, Mehmûd Lewendî, Rênas Evdal, Eyup Sinan Kıran û Ümit Demirhan.

Ev civîn li welatên cihê tên kirin. A yekemîn li Barcelona, li Ispanya, û ya dawîn li Stokholmê, li Swêdê, bûn.

Hamit Kılıarslan ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku metirsiya (tehlike) herî mezzin li ser zimanê kurdî nebûna dewleteke kurdî ye, ji bo ku dema ku ziman li dibistan û zanîngehan neyê hîn kirin, ew dikare hunda bibe. Û wî got jî ku di van civînan de, ev lêgerên kurd gotinên di warên cihê de, weka çandin, tendurustî, anatomî, maf (yasa), abor … tehlîl dikin.

Encamên van lêgerînan di kovara « Kurmancî » de tên weşandin. Bi ser de jî, heta nuha 2 pirtûk li ser vê babetê hatine weşandin.
*(rudaw.net, 24.05.2016)*

**KURDISTANA SÛRIYÊ**

***Pirtûkek li ser keçeke cuhan a kurd***
Nivîskara navdar a brîtanî Christina Lamp pirtûkek li ser Nûjîn Mustafa, keçeke cuhan a 16 salî, ji Kurdistana Sûriyê, nivîsî. Navê wê « Nujeen's Incredible Journey » (Gerra ku nayê bawer kirin a Nûjînê ». Ewê di 11.10.2016 de bê weşandin.

Nûjîn bi nexweşiya felca zarokan ketiye. Dema ku şerr li dijî Dewleta Islamî dest pê kir, bajarê wê, Munbic, ji aliyê vê Dewletê hat stendin. Ew û malbata xwe çûn Kobanî, û ji wê derê Entabê, li Kurdistana Tirkiyê. Piştre, hemî malbat li belemeke (qayix) piçûk siwar bû, ji bo ku biçe Almanya. Nûjîn bi riya şirketeke fîlmên amerîkî zimanê ingilîzî hîn bû.
*(avestakurd.net, 07.05.2016)*

***Keçeke piçûk paytextên cihanê ezeber dizane !***
Rolma keçeke piçûk ji Kurdistana Sûriyê ye. Wê navên paytextên welatên cihanê ezber kirine ! Dema ku kesek jê re navê welatekî dibêje, ew tavil navê paytexta wî dibêje û tucar şaş nabe. Kanala têlêvîzyona Rûdawê ew nîşan da.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 20.05.2016)*

**TIRKIYE**

***Fêstivala Çand û Hunerê***
2mîn Fêstivala Çand û Hunerê li Istanbulê, ji aliyê Navenda Çanda Mêzopotamya hat pêk anîn. Hunermên 4 perçeyên Kurdistanê bi pêşangeh, panêl, şano, fîlm, konsêran … beşdarî wê bûn.

Ji konsêran, a Yelda Abbasî, li eywana Şanoya Kenterê, bû. Bi sedan Kurdên Istanbulê beşdarî wê bûn.
*(rudaw.net,11.05.2016)*

***Alan Kurdî li ser text***

***Di 20 Gulan de***, fêstivala texttiraşiyê li bajarokê, ku girêdayî Eskişehirê ye, dest pê kir. Ewê heta 29 Gulan bajo. Ji 50 hunermend bêtir, ku ji Amerîka, Japon, Koreya Başûr, Gurcistan û Tirkiyê hatine, beşdarî wê bûn.

***Di 25 Gulan de***, hunermendek ji Kurdistana Sûriyê, Ismaîl Çengelî, wêneya Alan Kurdî, zarokê ku li deryayê Êgê festisî bû, li ser tekst çêkir. Ev tablo bala gelek kesan kişand.
*(rudaw.net, 24.05.2016)*

***Alan Kurdî : Xelata Fotoya Salê***



Di pêşbirkekê (musabeqe) de, Rêxistina Nûçegihanên Fotoyan li Tirkiyê "TFMD", ku li Ankara ye, Xelata Baştirîn Fotoya Salê da Nilufer Demir, jineke fotograf ku fotoya navdar a Alan Kurdiyê fetisî kişandi bû. Li vê pêşbirkê, 4.155 foto hatin nîşan dan.
*(rudaw.net, 26.05.2016)*

***Weşandina stranên Celadet Bedir Xan***
Weşanxaneya kurdî "Avesta" berhevokeke 128 rûpelî, ya bi navê "Stranvan", ku tê de hemî stranên ku di destpêka sedsala 20mîn de ji aliyê ronakbîrê kurd ên navdar, Celadet Bedir Xan, dihatin stiran hene, weşand.

Ev stran ji her du kovarên Hawar û Rohanî, ku ji aliyê mîr Bedir Xan dihatin weşandin, hatin stendin.
*(rudaw.net, 25.05.2016)*

**WELATÊ BASK**

***Pirtûkek : "Kurd"***
Dîrokzanê baskî Manuel Martorell pirtûkek li ser Kurdan, bi navê "Kurdos" (Kurd) weşand. Wî li ser wê bi ajansa Rûdawê re peyivî û got ku nuha, ji sedema şerrê li Sûriye û Iraqê, Kurd bextekî (şans) wan ê dîrokî heye ku xwe li cihanê bidin nas kirin. Û wî got jî ku ev cara yekemîn e ku hêzên mezzin ên navneteweyî, Amerîka, Rûsya û Yekîtiya Ewropî, girîngiya Kurdan li Rojhilata Navîn têdigihêjin û ji *"riya maqûl û sêkuler (ne girêdayî olê) ya Kurdan"* agahdar in.

Di pirtûka xwe de, nivîskar dibêje ku li gel ku Kurd misilman in, ew şerrê Dewleta Islamî û komên din ên weka wê dikin : *"Bi vê pirtûkê ez dixwazim nişan bidim ku Islama ku Kurd dijîn dikare bi dêmokrasiyê re bijî û ku ew dikare bi ol û çandên din re bijî. Ev yek hergav ji aliyê Kurdan hati bû parastin"*.

Pirtûk rewşa li Iraq, Îran, Sûriye û Tirkiyê, di sedsalên dawîn de, dibêje. Û ew beşeke taybet ji nijadkujiya Kurdên Yezîdî ji aliyê Dewleta Islamî re terxan dike (vediqetîne). Û ew serokê tirk Recep Tayyıp Erdoğan jî bi kirina "paqijkirina nijadî" li hemberî Kurdan tawanbar dike.

Li ser bergê, nivîskar xwest ku fotoyeke jineke şervan deyne, ji bo ku rola jina kurd nîşan bide. Wî got ku şerrê jina kurd li 4 perçeyên Kurdistanê wêneya jinê li Rojhilata Navîn guherand.

Martorell 4 pirtûkên din li ser Kurdan nivîsîn : 1) Los Kurdos : Historia de un aresistencia (Kurd : Dîroka liberxwedanekê). 2) Kurdistan, el Complot del Silenci (Kurdistan, Komploya Bêdengiyê). 3) Kurdistan : viaje al pais prohibido (Kurdistan : Geştek li Welatê Qedexe). 4) Estos son los Kurdos : Analiis de una nacion (Ev in Kurd : Tehlîla Neteweyekî). Bi ser de jî, di 2010 de, wî destana kurdî ya navdar "Mem û Zîn" (a weka "Romeo û Juliette", ku di sedsala 17mîn de ji aliyê helbestvanê kurd ê navdar Ehmedî Xanî hati bû nivîsîn) wergereandi bû zimanê baskî.
*(rudaw.net, 17.05.2016)*

**UNESCO**

***Reva muzîkvanên kurd ên Sûriyê***
***Di 13 Gulan de***, muzîkvanê navdar ê Kurdistana Sûriyê, Ganî Mîrzo, beşdar bûn civîneke UNESCO li Parîsê, li ser muzîkê li Sûriyê. Muzîkvanên kurd, ereb, ermenî û suryanî beşdar bûn. Mîrzo tê de got ku muzîka klassîk a sûrî divê ku di arşîvan de bê parastin û ji nifşên nuh re bê hîn kirin. Û wî bangî berpirsiyarên Kurdistana Iraqê kir ku muzîk û mîrasa Kurdistana Sûriyê ji UNESCO re bidin nas kirin. Wî got ku ewê civînek li ser vê yekê di Hezîranê de li Berlînê bibe.

Ji 1993 de, Mîrzo li Barcelona, li Katalonya, li Ispanya, dijî. Ew serokê beşa muzîka rojhilatî ye.
*(rudaw.net, 18.05.2016)*

**FRANSA**

***Fîlmeke kurdî li Fêstivala Cannes tê nîşan dan***
***Di 20 Gulan de***, fîlma belgeyî ya kurdî "Pêşmerge", ku ji aliyê feylesûf û nivîskarê fransî, yê ji eslê cihû, Bernard Henri Lévy, hatiye çêkirin, li Fêstivala Fîlm a Cannes, li Fransa, hat nîşan dan. Ev yek, piştî rasthatina şandeke kurdî bi serokê Fransa, François Hollande, re.

Şanda Kurdistana Iraqê, bi cillê kurdî beşdar bû Fêstivala Cannes. Ew li ser xaliyeke sor di rê de çû û ji aliyê birêvebirê fêstivalê, Thierry Fermaux, hat pêşwazî kirin. Ew ji fermandarên pêşmerge, Cafer Şêx Mustafa û Sîrwan Berzanî, parlementera kurd a yezîdî li parlementa iraqî, Viyan Dexîl, û stranbêj Helly Luv pêk hati bû. Bi ser de jî, konsulê Fransa li Hewlêrê, Frédéric Tissot, bi cillê kurdî beşdar bû û wî got : *"Ez jî Kurd im"*.

Fîlma "Pêşmerge" 92 xulek (deqqe) dikişîne û li Kurdistana Iraqê hatiye çêkirin. Ew tekoşîna pêşmerge li dijî Dewleta Islamî "Daiş" nîşan dide.

Nimînendeyê (temsîlcî) ajansa Rûdawê li Cannes, Derbaz Yûnis, got ku eywan tijje bû û ku berteka (réaction) temaşevanan gelek erênî bû. Ji sedema vê ecibandinê, biryar hat stendin ku fîlm careke din, di rojeke din de, bê nîşan dan.

Birêvebirê fêstivalê ji ajansa Rûdawê re got ku ew serbilind e ku fîlmeke ku mêrxasiya Pêşmerge nîşan dide li Cannes bê nîşan dan. Şanda kurdî jê re logoya wezareta pêşmerge ya Kurdistana Iraqê û aleke kurdî pêşkêş kirin.

Fîlmçêker, Bernard Henry Lévy, got ku ev fîlm naskirina moral a Kurdan e : *"Dem hat ku peymana Sykes-Picot bê şikandin. Sedsalek ji bo rastkirina şaşiyekê têr dike"*.

Eger em werin serokê Fransî, François Hollande, dema ku wî fîlm dît, xwest ku careke din piştgiriya Fransa ji pêşmerge û gelê Kurdistanê re, ku heta nuha ji bo cihanê li dijî Dewleta Islamî li ber xwe didin, dilniya (te'kîd) bike.
*(rudaw.net, 20, 21 û 22.05.2016)*

## KURDISTANA ÎRANÊ

***Yariyeke lîzan***
5mîn Fêstivala Navneteweyî ya Lîzên Herêmî li ber gola Zirêbarê, li Merîwanê, li Kurdistana Îranê, bû. 286 lîzvan, ji Kurdistana Îranê, Îran û Kurdistana Iraqê, beşdar bûn çalakiyên cihê.
*(rudaw.net, 27.05.2016)*

## HOLLANDA

***Civîna 55 kanalên têlêvîzyonê***
***Di 27 Gulan de***, birêvebirên têknîkî yên 55 kanalên têlîvîzyonên welatên mezzin, endamên ENEXê, li Amsterdamê civiyan. Ev yek, ji bo giftûgokirina pêşveçûnên dawîn ên têknîkî yên mêdyayan. Ewê civîn 2 roj bajo.

Kanala têlêvîzyona kurdî Rûdawê hati bû vexwendin. Birêvebirê wê yê têknîkî, Hejar Birincî, tê de semînerek li ser Rûdawê û rewşa mêdyayan li Rojhilata Navîn kir. Ji şirketên beşdar, CBSa amerîkî, Sky Newsa brîtanî û RTLa almanî hebûn.
*(rudaw.net, 27.05.2016)*

## AMERÎKA

***Fîlmeke kurdî***
Fîlmçêker Huseyn Ehmed, Kurdekî Iraqê ku li Amerîka, li New Yorkê, dijî, fîlma xwe "Li Pey Ronahiyê", ku beşek jê li California hat kişandin, kutah (xelas) kir. Ew tê de rewşa gelek xerab a malbateke kurd, ku di 1980 de ji şerrê Saddam Huseyn reviya bû, nîşan dide. Ew dibêje ku erdnigariya (coxrafya) California weka ya Kurdistanê ye. Lîzvanên (acteurs) meksîkî, kanadî û îranî tê de dilîzin. Wî got ku ji bo ku wî lîzvanên kurd ne dîtin, ên meksîkî stendin, ji bo ku ew gelek weka Kurdan in (dişibihin Kurdan).
*(rudaw.net, 31.05.2016)*

## ABXAZYA

***Maçeke futbolê : 3-0***
***Di 31 Gulan de***, di çarçeveya Kûpa Cihanê de, ku li bajarê Suxumê, li Abxazya derbas dibe, yaneya (équipe) kurdî ya futbolê bi 3-0 Korê şikand.
*(rudaw.net, 31.05.2016)*

*Ev bulten bi 4 zimanan, kurdî, fransî, hollandî û ingilîzî tê weşandin û bi e.mail ji nêzîkî1.000 navnîşanan re tê şandin. Ew bi kurdî û fransî ji aliyê Pervîn Cemîl tê nivîsîn û ji aliyê Şîrîn Gerits tê wergerandin hollandî û ingilîzî. Montaja wê ji aliyê Pieter Gerits tê kirin. Rênas Newrozî wê li ser CD'yan tomar (qeyd) dike û datîne ser facebook û malpera entêrnêtê, yên Buroya Kurdî, û* http://en.calameo.com/accounts/3601834. *Ew li ser kaxiz jî tê çap kirin û danîn nav pirtûkxaneya Buroyê, ku tê de berhemên bi nêzîkî 10 zimanan hene.*



**Vlaamse Gemeenschapscommisie Brussel**

